

**Bi rêya înternetê xwe fêr kir** 12

## Ciwanekî Kurd firokeyek çêkir

**Ji bo Xiristiyanên Kurdistanê serdemek zêrîn destpê kiriye** 4

## Di 6 salên borî de 54 dêr li Kurdistanê hatine avakirin



# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Xwendevanên Rûdawê bêtir dizanin




پەرلەمانتارێکی کورد لە سوێد:

**نەدەبووایە یەکێتی پرۆپاگەندە بۆ سۆسیال–دیموکراتەکان بکات**

12 ◀


**Deutschland 1,50 Euro** | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

**Hejmar / Nr. 72 | 23 Mijdar / November 2010**


**Karmendê berê yê TRT-6'ê ji Rûdawê re diyar kir:**

# Li TRT-6'ê 'Peyvên ROJ TV' qedexe ne!




**Ji dema damezirandina TRT-6'ê ve, ew kanal di nav Kurdan de dibe sedema guftûgoyên cihereng. Karmendê TRT-6'ê Rengîn Elçî ragihand ku rayedarên kanalê çendîn peyvên kurdî - bi hinceta ku ROJ TV ew afirandiye - li wan qedexe kiribûn. Elçî piştî îstifaya xwe ji Rûdawê re axivî: "Bi erênî destpê kirin, lê paşê helwesta wan guherî."** ▶3

## Desmond Tutu daxwaza azadkirina Ocalan kir

**Bruksel (Rûdaw) -** Di konferansa salane ya taybet bi doza Kurd li Parlamena Ewrûpa, ku hefteya borî lidarket, kesayeta navdar a Başûrê Afrîka û wergirê xelata Nobel a aştiyê, Desmond Tutu, daxwaz ji Hikûmeta Tirkiyê kir ku ji bo pêngavêtina berbi çareserkirina doza Kurd Abdulla Ocalan azad bike. Tutu ku di xebata li dijî sîstema regezperestî li Başûrê Afrîkayê hevalê Nelson Mandela bû, herwiha destxweşî li Hikûmeta Tirkiyê kir ku di zîndanê de bi Ocalan re civiyaye û got ku ”ev nûçeyeke mezin û hêjayî destxweşiyê ye." Lê rojnamevanê Tirk Cengiz Çandar red dike ku bi azadkirina Ocalan wê pêngava yekemîn berbi çareserkirina doza Kurd li Tirkiyê bê avêtin û dibêje, ”Eger desthilata min hebûya, min ê Ocalan azad bikira, lê azadkirina wî niha ne karekî realîst e." Li gor profesor û qunciknivîsê berdewam ê Rûdawê David Romano jî, azadkirina Ocalan di şertûmercên niha de "xwekuştineke siyasî" ya dewlera Tirkiyê ye."



## Cihûyên Kurdistanê çanda Kurdan diparêzin



Serokê Komela Dostaniya Îsraîl-Kurd Dr. Mordechai Zekan ku bi xwe zarokek ji malbatek Cihûyê Kurdîstanê ye, di hevpeyvîneke ligel Rûdawê de bibîrxist ku Kurd û Cihû bi hezaran salan di nav aştiye de bi hevre jîyane. Zekan da zanîn ku niha li Îsraîlê derdora 150 hezar Cihûyên ku piştî avabûna dewleta Îsraîlê ji Kurdistanê koç kirine, hene û got, "Wan çanda Kurdan jibîr nekirine û vê çandê bi Îsraîliyan didin nasîn. Rewşa Kurdan ji nêz ve dişopînin û ji tekoşîn û doza Kurdistanê re sempatiyek wan a gelek mezin heye."



Dr. Zekan

Dr. Zekan di derbarê têkoşîna Kurdên Bakur de jî axifî û got "Kurd li Tirkiyê di bin zilm û zora dewletê de dijin. Eger Kurd zorê li Tirkiyê nekin dewlet nayê guhertin."

Zekan daxuyand ku her çiqas îro tekiliyên Îsraîl û Tirkiyê hinek ne baş bin jî, lê 30 sal in ku ev herdu dewlet di pêwendiyê de ne. Di van pêwendiyan de firotin û girtina çekan jî heye. Di rojek de têkiliyên wan xirab nabin. Lê îro îmkan heye ku ev pêwendiyên Îsraîlê yên bi Tirkiyê re, bên guhertin. Dibe ku têkiliyên bi Kurdan re xurt bibin." ▶11



## Êzîdî li bajarê Kalkar navendekê ava dikin

**Êzîdiyên bajarokê Almanyayê Kalkar li ser 130 metre çargoşe û bi 250 hezar Euro navendek olî û çand-hunerî ava dikin** ▶ 7








Great Britain

Her rojên Şêşemê LI FIROŞGEHAN **Rûdaw** ÇAPA EWRÛPA

www.rudaw.net
info@rudaw.eu

## Bayram Ayaz

## Mesûd Barzanî: Liderekî Rojhilata Navînî bi liyaqata navnetewî



Berî du hefteyan li Başurê Kurdistanê û Îraqê bi însiyatifa Serokê Kurdistanê M. Barzanî gavên siyasî yên zaf girîng hat avêtin. Ev bûyereke dîrokî ye. Bi vê yekê di pêvejoya siyasî ya Îraqê de giraniya Kurdan zêde bû. Rola Mesûd Barzanî jî li Îraqê û li Rojhilata Navîn xurttir bû. Piştî vê helwesta serkeftî êdî Serokê Kurdistanê li Rojhilata Navîn liderekî herêmî ye, bi piştevanî û liyakateka navnetewî. Ev rol û giraniya Mesûd Barzanî ji bo çareseriya doza Kurdistanê derfeteke dîrokî ye. Ev rol ne tenê ji bo pêşxistina pêvejoya dewletbûna Başurê Kurdistanê girîng e, her wisa ji bo tevayiya tevgera Kurd û Kurdistanê derfetekî zêrînî ye.

Di dîroka netewe û civakan de rola lîderan rolake sereke ye. Rewşenbîriya siyasî û elîta birêvebiriya siyasî ya Kurdan pêwist e vê mijarê bi girîngî gengeşe bike û bizane ji vê derfetê çawa sûdê werbigre.

Di vê mijarê de helbet divê mirov gelek şiyar be. Nirxandina rola lîderekî ne tenê pirsa pesindanê ye. Medya Kurdî û xelkê me gelek caran ji devê Serokê Kurdistanê bihîstiye ku ew xwe îro jî wek pêşmergeyekî doza Kurdistanê dibîne. Mirov bi dilekî rehet dikare bêje ku hewcedariya wî bi pesnên kesayetî tune. Pisporên siyasiyên ku şêweyê xebata Serokê Kurdistanê ji nêzîk ve dişopînin, hertim dibin şahidê sadeyî û dilnizimiya wî. Mijara ku em dixwazin pê îşaret bidin, di pêvejoya siyasî ya nû de rola lîderîtiyê ye. Di dîrokê de lîderên netewî, herêmî û navnetewî nebûne qismetê her miletekî. Gelek xelkên bindest ji ber nebûna rêvebiriyekî jîrek û lîderekî zana û bi hêz têk çûne, di nav rûpelên dîrokê de wenda bûne. Di dîroka me Kurdan de jî numûneyên vê yekê gelek in. Kesayetên xwedî xususiyetên lîderiyê ku ji nav Kurdan peyda bûne, tuşê belayan bûne, hema bêje tevayiya wan hatine sêdarekirin an jî kuştin. Ji ber ku dijmin dizane xelkê bê “serî”, dimîne bindest û bê dewlet. Lê serwerekî zana çareseriyan dibîne û gelê xwe digihîne armancê.

**Ev ezmûna ku rola Serokê Kurdistanê xurt kir, çibû?**

Îraq di krîzeke dijwar de bû. Grupên siyasî lihevnedikir, Parlamena Îraqa federal nedikarî bicive. Birêvebiriya siyasî ya Îraqê bi temamî xetimî bû. Hewldanên hêzên navnetewî û herêmî yên xêrxwaz jî hebû, lê desttêwerdanên xirabker jî dihat kirin. Ev krîz dikarî bibûya sedemê bûyerên nebaş li Îraqê, li Başurê Kurdistanê û seranserê Rojhilata Navîn. Li ser heyîn û rola Amerîkayê jî dikariya gengeşeyeke nû ya negatif destpê bikira. Krîz bi saya hewldanên Serokê Kurdistanê heta dereceyekî çareser bû. Li Besrayê Ereban bi daliqandina hezar alayên Kurdistanê ev rol pîroz kirin. Barak Obama, Kral Abdullah û gelek rayedarên navdar pîrozbahiya Mesûd Barzanî kirin. Serok Barzanî êdî liderekî xwedî projeyên çareseriyan e. Em bawer in, di demê pêş de, wê di mijara prosesa aşitiyê li Tirkiyê û Bakurê Kurdistanê de jî roleke xuyayî bi cîh bîne. Em ê bibin şahidê vê dilşadiyê jî û gelek gavên dîtir jî.




Barzanî bersiva Rûdawê da:

# Nabe çar salên pêş wek çar salên borî bin



Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî

**Namo Ebdulla** Hewlêr

Barzanî got nabe çar salên dahatû wek çar salên borî bin, ev jî wek amajeyekê bû ji bo cîbicînekirina madeya 140ê û pirsgirêkên ku di çar salên borî de di navbera Hewlêr û Bexda de hebûn.

Pêkanîna hikûmeta nû ya Îraqê di civîna 11’ Mijdara 2010’an a Parlamena Îraqê de ron bû û piştî ku lîstan bi insyatîfa Serokê Herêma Kurdistanê, Mesûd Barzanî, li ser dabeşkirina postên dewleta Îraqê lihevkirin. Daxwazên aliyê Kurdî ku di 19 xalan de hatine civandin û cîbicîkirina madeya 140ê xaleke wan a here giringe. Barzanî got Malikî bi daxwazên aliyê Kurdî razî bûye.

Sala 2005’an jî Nûrî Malikî li ber parlamenê diyarkir ku cîbicîkirina madeya 140ê beşeke karên wî ye, lê ev made nehat cîbicîkirin. Malikî di serdanekê de li Silêmaniyê ji bo rojnamevanan got, wan wek hikûmet erkê xwe bicih anîn, lê divê serokayetiya komarê sînorên îdarî yên parêzgehan, ku berê ji aliyê meclîsa serkirdayetiya şoreşê ya partiya Beisê hatin guherandin, rast bike. Lê serokayetiya komarê bi taybetî ji ber dijayetiya cîgirê serokkomar ê wê demê û yek ji serkirdeyên niha yên Lîsta Îraqiye Tariq Haşimî nikarîbû wê yekê bike. Haşimî vê carê jî hatiye berbijarkirin da ku bibe cîgirê serokkomar. Ev yek jî pirsiyarê dixe ser wêya ka gelo vê carê jî wek çar salên rabirdû nabe.

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, bersiva pirsiyareke Rûdawê dide û bi pêdagirî dibêje: "Nabe çar salên dahatû wek çar salên borî bin." Barzanî, ku insyatîfa wî bû sedemê dawîhatina qirîza siyasî ya Îraqê, roja 12’î Mijdara 2010’an di civîneke çapemeniyê de di dema vegera wî ji Bexda got ku Kurd niha ne ku her li Bexda lê li cîhanê û navçeyê jî xwediyên giraniyeke xwe ya taybet in.

Barzanî di hevpeyvînekê de ligel rojnameya Los Angeles Times a Amerîkî, bi heman awayî dibêje: "guman tê de nîne ku çar salên borî tecrûbeyeke dewlemend bû ji bo Serokwezîr Malikî, Partiya Dawe, aliyê Kurdî û her aliyekî din ê di vê prosesê de beşdar. Divê em zemîneke hevbeş û xalên hevbeş di navbera xwe de bibînin ji bo ku bi hev re li ser wan bixebitin."

Lê peymanêrê Los Angeles Times bi lez ji Barzanî dipirse: Çi dihêle baweriya te bi te hebe ku Malikî îbret ji tecrûbeya rabirdû wergirtiye? Barzanî wiha bersiv dide: "Gelek sedem hene: gotûbêjên me ligel wî, 19 daxwazên me, bername û acendaya hikûmetê, yasa û karkirina parlamento, bingehên hevbeşiyê û terazûya desthilatê. Ev hemû me piştrast dikin ku proses bi awayekî dirust diçe."

Berî hefteyekê nûnerên Lîsta Îraqiye bi serokatiya Eyad Elawî serdana Kurdistanê kirin, lê wiha diyar bû ku bi 19 xalên aliyên Kurdî razî nebûn.

Hêjî ne eşkere ye ka Malikî dikare çend daxwazên gelê Kurd cîbicîh bike, herwiha ne ron e ka di vê mehê de Malikî dikare Sunî û Kurdan razî bike li ser dabeşkirina wezaretên girîng û postên girîng ên din ên dewletê. Grûpa Sedr jî yek ji pirsgirêkan dibe ku Amerîkiyan hişyariyeke tund daye ku nabe postên asayiş û îstîxbarat bikevin destê wan de.

Xuya ye ku erkê Hikûmeta Îraqê wê li dawiya sala dahatû girantir dibe, ji ber ku hêzên Amerîka biryar dane wê demê bi tevahî ji Îraqê derkevin. Barzanî diyar kir li Îraqê hê: "Kesên kîndar hene. Neyarên gelê Kurd in. Wek hevwelatî di pileya dûyem de berê xwe didin Kurdan û dixwazin Kurd herdem boyaxçî bin."

Bi baweriya Barzanî wergirtina postê serokkomar ji aliyê Kurdan, serkeftinek bû li ser wanên ku didîtin Kurd nehêjayî vê postê ne, ji bilî guşarên derveyî yên zêde ku li ser Kurdan hebûn, da ku dest ji vê postê berdin û wek Barzanî got hinek caran digihiştin astê "bêzarkirinê".

**Rûdaw**
Rojnameyeke siyasî û heftane

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Serokê Civata Rêvebir**
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Sîdar Bengîn Epozdemir
sidar@rudaw.nl

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Dipl. Kfm. Abdulletif Canimana
info@canimana.de

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

## Karmendê TRT-6'ê yê berê rewşa nav TRT-6'ê ji Rûdawê re diyar kir:

# "Ma heta niha Oksforda kurdî hebû?"

▶ Ew yek ji hevkarên TRT-6'ê bû, lê ji ber ku hinek rayedarên vê kanalê rûmetê nedidan zimanê kurdî, îstîfa kir.

▶ Peyvên ku birêvebirên TRT-6'ê bi ti awayî nedipejirandan ev bûn: "Netew, artêş, tenduristî, serokkomar, navnetewî, leşker, şaredarî û hwd..."

Fatma Savci

Rengîn Elçî ku ji destpêkê heta demeke berê bi TRT-6'ê re xebitî, ji ber hinek pirsgirêkan dev ji karê vê saziyê berda û îstifa kir. Elçî di hevpeyvîneke ligel Rûdawê de daxuyand, ji ber wan di destpêkê de li ser hinek xalan li hev kiribûn, dema pêşî pirsgirêk derneketin, lê paşê rayedarên vê kanalê di nûçe û bernameyên din de bikaranîna hinek peyvên kurdî, bi hinceta ku ji aliyê ROJ TV ve hatine afirandin, xedexe kirin. Elçî da zanîn ku piştê qedexekirina van peyvan wî bi birêvebirên TRT-6'ê re axiviye û xwestiye ku bi zanebûn peyv şaş neyên bikaranîn, lê rêvebirekî TRT-6'ê lê vegerandiye 'Ma heta niha Oksforda Kurdî hebû ku tu dibêjî ev rast e, an ev xelet e?'



Rengîn Elçî ji destpêkê de di xebata TRT-6'ê de cih girtiye. Ew sedemê vê yekê bi guherandina helwesta Dewleta Tirk a derbarê zimanê kurdî de dibîne û dibêje, "TRT-6 li xwe mukir hatineke pir mezin a Komara Tirkiyê bû ku ji damezrandina xwe ve ev ziman înkar kiribû û di dawiyê de hebûna vî zimanî bi awayê vekirina vê kanalê erê û pesend kiribû. Xwezî hemû kesên di warê ziman de baş ev derfet bikar anîbûna û bi dest nezan û dilxiraban ve bernedana. Min bi vê raman û hêviyê despê kir."

### "Kurdî bi şêweyekî nebaş bikartînin"

Rengin Elçî salek piştî vekirina kanalê derbasî karê studoyoyan dibe û 4-5 mehan li wir dixebite. Di sala 2009'an de bi gelek produksiyonên ku karê TRT-6'ê dikin re weke dûblajvan, derhêner û wergêr xebitiye. Piştre ji ber hinek sedemên weke bi şêweyekî nebaş bikaranîna zimanê kurdî ew dev ji produksiyonan berdide û diçe bi birêvebirên kanalê re diaxive: "Min ji wan re got ku dixwazim kar bistînim û ez ê ji bo vî karî komeke jîr damezirînim. Kordînatorê giştî yê wê demê Sînan Îlhan û Cûmalî Çaygeç ê ku hê jî Midûrê Nûçeyan e, ji min re bi israr gotin ku 'tu di hundir de pirtir dikarî bibî alîkar û pêdîviya me bi mirovên di vî warî de baş heye. Bi rastî jî rewşa hundir pir xirab bû. Lewma min jî bawerî anî ku ez ê di hundir de bi feydetir bim û piştî demekî min pejirand."

Elçî dide zanîn ku wî li wir nûçe dixwendin û eger wî dom bikira wê derketa li himberê kamerayan nûçe pêşkêş bikirana: "Giringiya min hebû. Piraniya hevalên li wir bi min dişêwiriyan. Heta carinan min alîkariya wergerên nûçeyan jî dikir, lê belê ji ber ku ev nûçe ji aliyê şefê nûçeyan ve dihatin 'kontrolkirin', ku kurdiya wî pir qels bû, li min nexweş dihat."

Elçî derbarê derketina pirsgirêkan de jî axivî û got di destpêkê de ti pirsgirêk derneketine: "Ji ber ku li ser hinek xalan me li hev kiribû û bi rastî jî ji bo demekê li ser wê yekê dilsoziya xwe parastin. Lê belê piştre pirsgirêkên me dest pê kirin. Pirsgirêk qedexekirin û bilêvkirina hinek peyvan bû. Bi hinceta ku di kurdî de nîn in, an jî nayên bikaranîn û ROJ TV'yê afirandine, hinek peyv qedexe kiribûn." Elçî dibeje ku wan piştî derdora meh û nîvekê dixwest ku ew di dema nûçexwendinê de li şûna bilêvkirina PKK'ê bi awayê 'PeKeKe', weke 'PeKaKa' bilêv bike: "Disa dixwestin ez ji endamên wan re bêjim 'terorist' lê min nedigot. Lê belê di despêkê de me li ser vê li hev kiribû û gotibûn 'merak etme biz suya sabuna dokunmayacaz', yanî ew ê pirsgirêkan ji me re dernexînîn." Elçî dibeje ku hinek hevalên din weke ku ji wan dihat xwestin PKK bilêv dikirin û xwestîn wî jî qane bikin, "Ji ber ku ez ê derketama û min ê îcar nûçeyên zindî pêşkêş bikiran, lê min nekir. Û heta niha jî nekarîn pêşkêşvanek ku him bikare pêşkêş bike û him jî baş bixwîne peyda bikin. Hinek daxuyanî dan û gotin pêşkêşvan nîn e."

### "Dixwazin zimaneke ji tirki, erebî û farisî biafirînin"

Elçî baldikişîne ser wê yekê ku birêvebirên TRT-6'ê hinek peyvan bi şêweyekî ne fermî ji bo xebatkaran qedexe kiribûn û wiha dom dike: "Min ji wan re got ku qedexekirina peyvekê û zimanekî heman tişt e û ez tiştekî xelet bi zanîn nikarim bikim û hesêba vê yekê bidim. Di encamê de ez têgihiştim ku em ê bi hev re nebin serî û min biryara xwe ya îstîfayê da."

Lê Elçî radigihîne ku rayedarên TRT-6'ê ligel qedexekirina hinek peyvên ku qaşo Roj TV avakirine û di kurdî de peyvên wisa tune ne, hinek peyvên din zêde bikaranîne: "Digotin em zimanekî wisa bikar bînin ku hemû mirov fêhm bikin û hinek peyvên erebî, tirkî û farisî bi zanîn bikar bînin. Heta di civîneke de Sedat Dalda yê alîkarê Kordînator got 'Ma heta niha Oksforda Kurdî hebû ku tu dibêjî ev rast e, an ev xelet e?' Min jî ji wî re weke bersiv hebûna Enstîtuyên Kurdî dabûn."

**Peyvên qedexekirî:**

***Aram, arîşe, artêş, asayî, asteng, belavok, bûyer, çalakî, dadgeh, damezrandin, darayî, derhenêr, dîmen, dîrok, dozger, ewleyî, ewlekarî, erdnîgarî, êrîş, fermî, gerdûn, girîng, helwest, hîndekar, komar, kovar, maf, merc, mijar, nakokî, navnetewî, netew, nexşe, nijad, niqaş, nûçe, nûjen, parêzger, pejirandin, perwerde, pîşesazî, pêşkeş, pêvajo, pêwîst, pirtûk, pispor, bizîşk, raman, raya gel, rexne, rêxistin, rizgarî, şano, şaredarî, şîrove, tawanbarî, taybetî, têkoşîn, tenduristî, têkilî, wêje, qedexe, zanîngeh, zanyarî û hwd.***

# "Ambargo danîne ser min!"

Elçî dide da zanîn ku rêveberiya TRT-6'ê di civînê de gotibû eger ew rê li ber negirin, wê gelek kes ji me veqetin.

**Rûdaw: Kesên ku niha li TRT-6'ê dixebitin qala azadiya ramanê dikin û dibêjin em dikarin serbest fikra xwe vebêjin. Rast e ev yek?**

**Rengîn Elçî:** Kî qala vê dike? Yên navên wan û bernameyên wan li gorî rêzimana tirkî tên sererastkirin, an jî yên heyamekî li avahiya TRT'ê di cihên weke asansor û xwaringehan de axaftina kurdî ji wan re hatibû qedexekirin, qala azadiyê dikin? Di wir de du beş xebatkar hene: Yên di rêvebiriyê de ne û yên tenê xebatkar in. Yên di rêvebiriyê de ewqas azad in ku azadiyê nadin yên din û hemû du-sê kes in. Xebatkarên hinekî li dijî wan derketin, bi riya cîh guherandinê bêdeng kirin. Niha jî ambargoyek li ser min e û yên dixwazin ji kanalê veqetin tên tehdîtkirin ku li derve nekarin bixebitin. Û min weke mînak nîşan didin.

**Di navbera te û wan de problem hene, astengiyan ji te re derdixin?**

Belê. Heta beriya niha min û produksiyonekî lihev kiribû ku ez ji bo bernameya wan pêşkêşvaniyê bikim û demoya min kişandibûn. Beriya demoyê bişînim ez bi hevalekî ku li hundir dixebite şêwirîm û wî jî got "tu ji bo fikra xwe çûyî, pêwîst e hemû rêz bigrin." Kî ew demo dîtibe pir ecibandiye. Lê rêvebiriyê ji wan re gotiye ku em bi Rengîn Elçî re naxebitin. Heta gotine me ew ji kar avêtiye. Rêvebiriyê ji hemûyan re jî gotibû ku ti derdê me bi Rengîn re nîn e, lê belê eger em qebûl bikin wê ji bo pir hevalan rê vebe ku ji me veqetin. Bi rastî jî hinek hevalên dixwazin ji wan veqetin hene û ew ê di tirsa xwe re derkevin.

**Niqaşa te û herdu Kordînatoran çi bû, daxwazên wan ji we çi bûn?**

Ez bi Kordînatorê yekem Sînan Îlhan re li ser van peyvan pir axivîm. Wî jî got pêdivî bi demê heye û niha pir çewsandin hene. Ne yekî dijwar bû. Hinek tişt fêhm dikirin. Û Kordînatorê duyem Fethullah Kirşan bi rastî pir hêvî dabû ku kanalê bikşîne asteke bi qalîte. Lê belê di civîna yekem de diyar bû ku di heqê min de ji wî re pir tişt û bi teqez jî bi şêweyek xelet hatibûn kirin. Ez û ew bi hevre tenê beşdarê yek civînê bûn û di wir de got "Hinek hevalên me ji bo hinek tişt astengiyan derdixin, lê belê bila herkes tiştê jê re tê gotin bike û nivîsara jê re tê bixwîne, an ez li hesîrên çavên ti kesan nanêrim." Ew bû civîna min û wî ya yekem û dawî. Ez hatim Stenbolê û min piştî demekî îstifa xwe da.

Rêvebirê Nahiya Eynkawa Fehmî Metî Solaqa:

# Xiristiyanên Kurdistanê di serdemeke zêrîn de dijîn

**Rêvebirê Nahiya Eynkawa dibêje ku li Rojhilata Navîn ji bo kêmkirina Xiristiyanan planek heye, lê li Herêma Kurdistanê berevajî bûye û hejmara Xiristiyanan zêde bûye.**

**Eynkawa (Rûdaw) –** Piştî hilweşandina rêjîma Seddam Huseyîn, El Qaîde û rêxistinên çekdarî yên din li Besra, Bexda û Mûsilê êrîş birin ser Xiristiyanan û ji ber vê yekê koça Xiristiyanan berbi Herêma Kurdistanê û derve destpê kir. Rêveberê Nahiya Eynkawa Fehmî Metî Solaqa bo Rûdawê ragehand ku di 7 salan de 3 hezar mal hatine Eynkawa û got: "Niha Xiristiyanên Kurdistanê di serdemeke zêrîn de dijîn." Solaqa da zanîn ku di neteweyên Iraqê de yên zêde rêz li Xiristiyanan digrin Kurd in û Xiristiyanên koçber piştî li Kurdistanê jiyane, nerîna wan a derbarê gelê Kurd de guheriye.



Ji sedî 90'ê rûniştvanên Eynkawa di niştecihbûnê de sûdmendên Hikûmeta Herêma Kurdistanê ne

### Jimara Xiristiyanan li Kurdistanê zêde bûye

Nahiya Eynkawa niha wek nahiya Xiristiyanan tê naskirin û tê de corek ji otonomiya Xiristiyanan di pratîkê de hatiye çespandin. Rêvebirê Nahiya Eynkawa Fehmî Metî Solaqa wiha axivî: "Li Rojhilata Navîn ji bo kêmkirina Xiristiyanan planek heye. Li Lubnanê hejmara Xiristiyanan kêm bûye û ji sedî 60 daketiye ji sedî 40. Li Îraqê jî zêdetir e, lê li Herêma Kurdistanê berevajî tevahiya Rojhilata Navîn hejmara Xiristiyanan zêde bûye. Ev jî belge ye ku kêfa Kurdan ji jiyana bi hev re tê û mixabin kêfa Ereban ji jiyana bi hev re nayê."

### Ji sedî 90ê Xiristiyanên Eynkawa ji hikûmetê sûdmend in

Derbarê rewşa Xiristiyanan li bajarokê Eynkawa, Rêvebirê Nahiyê Metî Solaqa got ku piraniya Xiristiyanên ku hatine Kurdistanê li fermangehên Hikûmeta Herêma Kurdistanê hatine bicîhkirin, hinek ji wan jî di warê hilberîn û sektora taybet de kar dikin.

Solaqa destnîşan dike ku Eynkawa di serdemê rêjîma Baas de wek leşkergehekê girtî û paşguhxistî bû, lê bi taybetî di serdemê herdu kabîneyên 4 û 5'an de bi serokayetiya Nêçîrvan Barzanî, Eynkawa bi tevahî hat vejandin, avakirin û sînorê wê jî hat berfirehkirin. Solaqa wiha axivî: "Pênc taxên nû li Eynkawa hatin avakirin. Beriya ku hevwelatî xaniyan ava bikin, hikûmetê xizmetguzarî ji wan re birin, loma dikarim bêjim ji sedî 90'ê rûniştvanên Eynkawa di warê niştecihbûnê de sûdmendên Hikûmeta Herêma Kurdistanê ne."

Herwiha navbirî da zanîn ku di nava şeş salên borî de, li Herêma Kurdistanê ji aliyê hikûmetê ve 54 dêr hatine avakirin.

### Piştî bextreşiya giştî, koçberiyeke din

Hefteya borî dêra Seyde Necat li kolana Keradde ya bajarê Bexda bû nîşana Rêxistina El Qaîde û dehan kes di hundirê dêrê de hatin kuştin. Pişt re El Qaîde di beyannameya xwe de li dijî Xiristiyanan fermana giştî derxist û ragehand ku her Xiristiyanek ji niha şûnde nîşana wan e. Fehmî Metî daxwiyand ev gef e û got: "Bi rastî Xiristiyan tirsandiye û hejmareke din a Xiristiyanan dixwazin bên Eynkawa, ji ber li Sûriyê û welatên Ereb yên din jî nikarin bijîn."

### Nerîna Xiristiyanên koçber derbarê Kurdan de guheriye

Fehmî Metî Solaqa diyar dike ku Mesîhiyên ji naverast û başûrê Îraqê hatine Kurdistanê berê di derbarê Kurdan de nerîneke wan a rast nebû: "Lê dema hatin vir û dîtin serokatiya Kurd û gelê Kurd ligel wan çawa ye, nerîna xwe derheqê Kurdan de bi carekê guherandin. Ji ber têkiliyên wan bi Ereban û serdestiya ramana Erebçîtiyê li ser wan, qet bawer nedikirin ku gelê Kurd bi vî awayê mirovî û şaristanî ligel wan tevbigere."

Navborî amaje da wê yekê jî ku Mesîhiyên hatine Kurdistanê rewşa wan a darayî zêde xerab bû: "Gava hatin Eynkawa tiştekî wan nebû, lê niha piraniya wan xanî kirîne û cihgîr bûne û karê xwe dikin."



### Papa ji Barzanî re name şand

Fehmî Metî Solaqa mînaka bihevre jiyana neteweyan li Kurdistanê wek "mînakeke serkeftî" wesif kir û got ku Papayê Vatîkan jî ji vê yekê kêfxweş bûye: "Welatên Ewrûpa û Amerîka û Papayê Vatîkanê bi xwe amaje dane bihevre jiyana li Kurdistanê, ku bûye mînakeke taybet li cîhanê. Beriya du mehan Papayê Vatîkanê ji serok Barzanî re nameyek şand û li ser bihevre jiyana ku li Kurdistanê çêbûye sipasiya wî kir."

---

**Medya Deniz**

Ji bo aştiya civakî li Tirkiyê

# Komîsyona Lêkolîna Rastiyan divê

Rojek ji rojan mirovên bi maske tên û ji mala we, ji kêleka we an jî ji ciranên we kesekî digrin û dibin. Roj, meh, sal derbas dibin, lê ew venagere, ne agahiyekî jê tê û ne jî kesekî wî dibîne. Li her malekê, li her welatekî cûda gera bê rawestin a li wendayan pêk tê. Di bin baranê de sil bûn, di berfê de serma girtin, di bin tîrêjên rojê de ketin dû hêviyên xwe; xemginiyên xwe di serdema payizê de bi pelên zer ku ji daran rijiyana erdê re parve kirin û her tim li wendayiyên xwe geriyan.

Di navberê re dem debas bûn lê ew li benda ronîkirina rastiyan, sekiniyan. Li Tirkiyê bûyerên ev 30 salin pêk tên, her çiqas wek ser neyên qebûlkirin jî bilançoyên ku derketin holê didin xuyakirin ku bê guman çerekî mezin pêkhatiye. Di vî şerî de 17 hezar kes ji aliyê kujerên ne diyar ve hatin kuştin; bi giştî 40 hezar kes jiyana xwe ji dest dan. Ne tenê ev, lê 4 hezar gund hatin xerab û wêrankirin, 3 milyon kes mecbûr man koç kirin û zerarên din ku di nava civakê de û li ser jiyana mirovan çi bandor çêkirine, ti kes nikare hesab bike.

Birêz Ocalan behsa damezrandina Komîsyona Lêkolîna Rastiyan dike. Gelo çi ne komîsyonên Lêkolîna Rastiyan, çi dikin, li kîjan welatî çawa û bi çi armancê hatine damezirandin? Li gelek welatan bi cûreyekî din hatine damezirandin, lê mirov dikare armancên wan diyar bike: Ji bo ku borî dahatûyê dîl negire û dijminên berê bikaribin bihev re bijîn. Ya duyem: Pêngavên ku di demekî diyarkirî de pêkhatine, ronî dike.

Komîsyonên rastiyê bi vî armancî pêkhatiyên li dijî mafên mirovan ên ku herdu aliyan kirine, ronî dike. Ji bo vê jî bi qurbaniyan re diaxive, çavdêran guhdar dike, kujeran dibîne û wan guhdar dike û hemû diyardeyan dicivîne û eger karibe diçe di arşîvên dewletê de lêkolînan dike. Wê gavê qurbanî dikarin derdên xwe vebêjin, derfet çêdibin ku kujer bên darizandin û perdeya înkarê ji holê tê rakirin.

### Welatên ku li rastiyên xwe digerin

Di salên 1970'an de li welatên ku di dîroka wan a nêzîk de rûpelên bi xwînê sor bûne û bi wendayiyan tije bûne bigirin û derbasî rûpeleke pak bibin hewl dane ku destpêkeke nû vekin, mekanizmayên ku astiya civakî pêktînin damezirandine. Welatên ku heta niha ji bo ronîkirina dîroka xwe ya nêzîk komîsyonên rastiyê damezirandine, ev in: Arjantîn, Bolîvya, Çad, Şîlî, Komara Kongoya Demokratîk, El Salvador, Gana, Guatemala, Haîtî, Îndonezya, Lîberya, Fas, Panama, Paraguay, Peru, Sierra Leone, Afrikaya Başûr, Koreya Başûr, Srî Lanka, Uganda, Uruguay, dewletên ki ji Yugoslovya veqetiyan, Zimbabve, Fîlîpîn, Nepal, Ruanda, Nîjerya, Timora Rojhilat.

Mînaka herî balkêş û serkeftî ya Komîsyona Rastiyê li Afrikaya Başûr, piştî şerî navxweyî yê ku 45 sal dom kir, derket holê. Afrîkaya Başûr a ku ji sala 1948'an heta 1992'an di bin desthilatdariya rejîma nijadperest apartheid de hat birêvebirin. Ev welat, piştî ku rejîma apartheid bi alîkariya ambargoyên navnetewî hate hilweşandin û Kongreya Netewî ya Afrîkayê ku Mandela serokatiya wê dikir, ANC, bi hilbijartinan desthilatdariyê xiste destê xwe, bi formula, 'li himberê rastiyê lêborîn' Komîsyona Lihevhatina Netewî damezirand.

Komîsyona ku serokatiya wê Desmond Tutu dikir, wek ku nûnertiya welat a demografîk bike, ji 7 endamên çerimreş, 6 çerimspî, du Melez û du jî Hindûyan pêkdihat. Di nava sê salan de komîsyonê guhdariya nêzîkî 30 hezar kesan kir ku hinek ji wan di radyo û televizyonan da hatin weşandin.

Komîsyonên Rastiyê dikarin bûyerên li dijî mirovahiyê ku veşartî mane, ronî bikin, perdeya înkarê ji holê rakin, welatekî perçebûyî bi boriyê xwe re rûbirû bê û herwiha pêşniyaza ferormann jî bikin. Dîsan dikarin rêya darizandina adil jî vekin.

Tirkiye her çiqas hê jî nav lê daneniye jî, ji bo ku şerê navxwe karibe bi dawî bîne, pêdiviya wê bi damezrandina Komîsyona Lêkolîna Rastiyan heye. Ji bo aştî li Tirkiyê pêk bê, divê hemû rastî ronî bibin. Bi hêviya ku rastî derkevin holê û dad cihê xwe bibîne.

Di dema kîmyabarana bajarê Helebce de

# Kurdên Rojhilatî jî li wir bûn

**Di dema kîmyabarankirina bajarê Helebce de gelek alîgirên PDK-Îran li wir bûn. Ew neçarman birevin Îranê û li wir hinekan xwe weke Îraqî dan nasandin, lê li gor berpirsekî wê partiyê hinek endamên wan hatin girtin û sêdaredan.**



Sembola şehîdên bajarê Helebce

**Azad Kurdî**

Sedan Kurdên Rojhilatê Kurdistanê ku piraniya wan jin û zarok bûn, di dema kîmyabarankirina Helebce de, li wir bûn, lê bi zerereke kêm derbas bûn. Yek ji van Kurdên Rojhilatê Kurdistanê ku rizgarbû dibêje: "Dûyê cigareyan û betaniyên şil me rizgar kir."

Di dema kîmyabarankirina Helebce de ji aliyê firokeyên Artêşa Îraqê (16'ê Adarê 1988), bû sedemê mirina zêdeyî 5 hezar welatiyan û birîndarbûna hezaran kesên din. Bi sedan welatiyên Kurd ên Rojhilatê Kurdistanê ku Pêşmerge, kêmendam û salmezin û jin û zarokên Pêşmergeyên PDK-Îran bûn, li bajarê Helebce û derdora wê bûn ku beşekî wan ligel xelkê Helebce çûn Îranê, herwiha di wê demê de nêzîka 1000 Pêşmergeyên PDK-Îran jî ji dorpêça hêzên Îranê rizgar bûn.

Ev malbat ku hejmara wan zêdeyî hezarî bû, li derdora bingehên PDK-Îranê li ser sînoran dijiyan, lê ji ber tevgera leşkerî ya Îran, berî çend rojan ji kîmyabarankirina Helebce ji bo parastina canên xwe tên hundirê bajarê Helebce. Roja bûyerê jî hemû berbelav dibin û grûp grûp ligel xelkê Helebce bi mebesta rizgarkirina jiyana xwe berbi sînor direvin û li dawiyê xwe li Îranê dibînin.

Gulê Celalî ku jineke Rojhilatê Kurdistanê ye û ligel 4 zarokên xwe di dema kîmyabarankirinê de li Helebce bû, niha jî nizane çawa ji vê kilametê rizgar bû. Gulê wiha axivî: "PDK-Îran zanîbû ku hikûmeta Îranê tevgereke leşkerî ya zêde dike û êrîşeke berfireh amade dike, loma biryar da herin Helebce û roja berî kîmyabarankirinê me da ser rêya Helebce. Wekî din rê nebû, bi sedan bextreşî, tirs û dûdilî bi şev gihiştin Helebce."

Di heman demê ligel van kesan, nêzîkî 1000 Pêşmergeyên PDK-Îranê, di dema kîmyabarana Helebce de ji aliyê Artêşa Îranê tên dorpêç kirin. Endamê Komîteya Navendî ya PDK-Îran Ehmed Rehîmî ku wê demê yek ji fermandarên vê hêzê bû, daxuyand: "Artêşa Îranê em dorpêç kirin, rizgarbûna me ji vê dorpêçê nayê bawerkirin."

Hêza PDK-Îranê tenê 5 km'an ji Helebce dûr bû, Ehmed Rehîmî dibêje: "Ji aliyê hêzên Îranê hatin dorpêçkirin, Îran çek û cebilxaneyên zêde anîbû û dixwest êrîş bike ser Kerkûkê." Rehîmî eşkere kir, 4 hêzên Pêşmergeyên PDK-Îranê, Hêza Şaho, Hêza Zagros, Hêza 2'ê Rêbendanê û Hêza Beyan li navçên Newsûd, Deretifê û Şêxan dikevin ber êrîşan û tên dorpêçkirin: "Dema me hest kir bi tevahî hatine dorpêçkirin, me hemû tiştên xwe ji bilî tifingan li wir hiştin û di nava 3-4 demjimêran de me hemû hêzên xwe rizgar kirin. Hêzên Îranê bi tevahî navçe zeft kiribûn û dixwestin me hemuyan bikujin."

Rehîmî amaje da ku beşek ji Pêşmergeyan ku kêmendam, salmezin û gelek kesên din lixwe digrt li Helebce mabûn û nedikarîn ligel van hêzên Pêşmergeyan bikevin, hemû li Helebce dîl hatin girtin û bo Îranê hatin şandin. Li gor navborî, hinek ji wan demeke dirêj li girtîgehan man, beşekî wan li zindana Dîzil Abad li Tehranê û girtîgehên din hatin îdamkirin, ku nêzîkî 30 kes bûn: "Di wê rewşa dijwar de û li gor wê bextreşiya dijî mirovatiyê ku dijî xelkê bê tawanên Helebce hat kirin, tevî ku sedan jin û zarokên me li Helebce bûn û em jî hatibûn dorpêçkirin, lê zerereke zêde negihişte me, ev nayê bawerkirin."

Li gor gotina Gulê Celalî jî, roja ku Helebce hat kîmyabarankirin, hemû malbatên Rojhilatî ji hev veqetiyan û bi neçarî xwe wek Kurdên Îraqê dan naskirin û ligel xelkê çûn Îranê. Wek Gulê amaje dide hinek ji van malbatan 4-5 salan li wir man û beşekî wan jî qet venegeriyan û hinekî din piştî eşkerebûna wan hatin girtin.

Gulê tevî 4 zarokan ligel çend malên din ên rojhilat, bi çavê xwe termê sedan jin û zarokên Helebce dît ku ji ber kîmyabarana Beisê şehîd ketibûn: "Pir zehmet e vêya jibîr bikim."

### "Bi kişandina cigareyan û betaniyên şil em rizgar bûn"

Gulê wiha axivî: "Çend bombe nêzîkî me teqiyan, lê jiber ku li bingehên PDK-Îranê gelek cigare hebûn, ji me re gotin cigareyan bikşînin, ji ber bandora gazên kîmyayî ji nav dibe. Jin û zarokan cigare kişandin da gaza kîmyayî nekeve qirikên me, loma em zindî man, lê gazê dîsa bandor li me kir û dev û rû û zik û lingê piraniya xelkê şewitîbûn, em ji ber kişandina cigareyan û betaniyên ter nemirin."

Dû re diçin Îranê, Gulê dom dike: "Rewşa me ya fîzîkî xerab bû, me şandin Hersîn û çend kes jî şandin Tehran û Îsfehan û bajarên din. Li Hersîn heta berê sibê em li mizgevtekê man. Piştî dermankirinê, berên me dan kampa koçberan. Ji tirsa parastina jiyana zarokan min navê hemuyan guherand."

Gulê 4 zarokên xwe bi rêya birayekî ku xelkê navçeya Hewraman a Rojhilatê Kurdistanê bû, dibîne. Dû re gava tên eşkerekirin, ji aliyê hêzên Îranê tên girtin: "Li zindanê sivikatî bi me kirin, herdem gotegotên kuştin û girtina hevjînên me û kesên din li zindanê belav dibûn. Piştî demekê ku lêpirsîn ligel me kirin, em azad kirin û em vegeriyan cem kesûkarên xwe." Gerek bû Gulê piştî azadkirina wê di destpêkê de rojane serdana îdareya Îtîlaat bike, dû re heftane û piştre jî mehane, herwiha nehiştin zarokên wê bixwînin û nasname nedan wan, loma Gulê careke din tê Başûrê Kurdistanê û li bingehên PDK-Îran dimîne, lê hinek malbatên din hê nevegeriyane.

**Ahmet Dere**

## Rapora YE'yê û Tirkiye

Roja 9'ê Mijdarê Komisyona Yekîtiya Ewrûpayê rapora xwe ya salane di derbarê welatên berendam, Hirvatîstan, Makedonya û Tirkiyê de eşkere kir.

Komisyona Ewrûpayê heman raporê derbarê hemû welatên berendam de amade dike û diweşîne. Lê belê, di dîroka vê Yekîtiyê de, heya niha di nava welatên berendam de ti welat weke Tirkiyê nebû ye. Raporên ti welatan jî weke yên vî welatî balkêş nebûn in û nehatine niqaş kirin.

Ev sêzdeh sal in ku heman Komisyon, di mehên dawiya salan de di derbarê pêşketinên li Tirkiyê de raporan eşkere dike. Di van raporan de wêneyê Tirkiyê tê kişandin û derbarê pêşketin û paşveçûyînan de analîz tên kirin, rexne çê dibin. Weke her salên borî, di rapora îsal de jî rewşa Tirkiyê zêde baş nehatiye analîzkirin, bi taybetî derbarê rewşa giştî ya mafê mirovan de rexne hatine kirin. Herwiha, derbarê mafê kêmneteweyan de jî rexne hene û ji Tirkiyê gavên pêşketî têne xwestin.

Weke tê zanîn Komisyona Ewrûpayê van raporan di çarçoveya berendametiya Tirkiyê ya ji bo Yekîtiya Ewrûpayê de amade dike. Yanî ji sala 1998'an vir ve heman saziya ewrûpî rewşa Tirkiyê dişopîne û di dawiya her salê de, nêrînên xwe dike rapor û ji raya giştî re eşkere dike. Naveroka van raporan ji bo hemû saziyên YE'yê weke referans tê girtin û li gorî wê peywendî bi vî welatî re tên pêşxistin.

Ji 12'ê Hezîrana 2005'an vir ve Tirkiye bi Yekîtiya Ewrûpayê re di nava guftûgoyan de ye. Li gor krîterên YE'yê, divê 35 xal bên guftûgokirin û her 27 welatên endamên YE'yê dengê erê bidin ku Tirkiye bibe endama vê Yekîtiyê, lê ji sala 2005'an vir ve tenê 13 xal hatine vekirin, di nava wan de jî yek xalek tenê hatiye girtin. Ew xal jî ya derbarê Zanistî û Lêgerînê de ye. Di nava wan 13 xalên ku hatina vekirin de 9 xal hatine bloke kirin, yanî derbarê wan de niha ti guftûgo nayên meşandin. Hin ji wan xalan ji aliyê Kibrisê ve, hin ji wan jî ji aliyê Fransayê ve hatine bloke kirin. Ev tê wateya ku ji 13 xalên vebûyî yek xal tenê hatiye girtin, 9 heb jî hatine bloke kirin, tenê 3 xal li ser maseya guftûgoyan man in.

Dema ku mirov li vê wêneyê pêvajoya guftûgoyan dinêre, pir zehmet e ku mirov bêje «wê rojekê Tirkiye bibe endama YE'yê». Li Tirkiyê jî hin derdor bi vî awayî analîzan dikin, lê ez bi xwe vê rewşê pir normal dibînim, wêneyê mijara gotinê li gorî Tirkiyê ye. Ewrûpa wisa bi hêsanî welatekî Misilman, xwediyê 80 mîlyon nifûsî û di herêma Rojhilata Navîn de, nagire nava xwe. Bi vê rastiyê ve girêdayî, di vî welatî de pirsgirêka Kurd heye û bi dorfirehî tê niqaşkirin.

Kurtayî: pêvajoya YE-Tirkiyê dewam dike, lê li ser vê rêwîtiyê pir kelem, mij û dûman heye.

Xwediyê pirtûkxaneya Cudî li bajarê Essen:

# Min di du salan de tenê pirtûkek kurdî firot

**Seydo di sala 2008'an de pirtûkxaneya xwe li Almanya vekir. Li ba wî ji bilî pirtûkên kurdî yên bi tîpên latînî, bêtir pirtûkên dîrokî, olî û yên derbarê pirsgirêka kurdî bi zimanê erebî hene. Ew dibêje pirtûkên kurdî yên bi tîpên erebî jî li cem wî hene lê "ji ber ku kesî nekirîn, min birin kêlerê."**



Selaheddîn Seydo Lêkolîna Zanistên Zimanan xwandiye û dixwaze di wî warî de xizmeta gelê Kurd bike

**Silêman Alîxan** Bochum

Selahedîn Xelîl Seydo Kurdekî ji bajarê Efrînê yê Rojavayê Kurdistanê ye. Ew di sala 1986'an de hatiye Almanya û dibêje ew ji kevin de ji xwendin, kirîna pirtûkan û bidestxistina çavkaniyan hez dike: "vê yekê ez paldam ku di sala 2008'an de pirtûkxaneyekê li bajarê Essenê vekim." Selahedîn dibêje ku pirtûkxaneya wî ya malê ji vê mezintir e û wiha pêde diçe: "Hinek pirtûkên min ên derbarê Kurdan hene ku belkî li cem kêm kesan hebin."

Xwediyê Pirtûkxaneya Cudî li Sûriyê 3 salan wêjeya inglîzî xwendiye, li Zanîngeha Bochum a Almanya jî beşa Rojilatnasî, Zanistên Îslamî, Lêkolîna Zanistên Zimanan (Sprachlehrforschung) xwendiye û mastera xwe jî li wir standiye. Selahedîn Seydo dibêje ku bêtirî 15 ton kitêbên wî hene: "herî zêde pirtûkên erebî yên derbarê Îslamê tên frotin, lewma ez bêtir wan tînim." Wî herwiha eşkere kir ku pirtûkên kurdî jî li pirtûkxaneya wî hene, lê tenê yên bi tîpên latînî tên firotin: "Di bêtirî du salan de tenê yek pirtûka kurdî 'bi tîpên erebî' hat firotin, ew jî Kurdekî Rojhilatî kirî, loma min ew rakirin kêlerê, ji ber ku cî jî teng bû." Lê Seydo cihekî mezintir dîtiye û ew ê di demeke nêzîk de pirtûkxaneya xwe bibe wir.

Seydo ku bi coşeke kurdewarî diaxivî, diyarkir ku ji bilî Kurdan, Ereb jî pirtûkên wî dikirin: "Carekê mizgefteke Ereben Morokî ji bajarê Wuppertalê li Almanya komeke pirtûkên Erebî yên derbarê Kurdan ji min kirîn, ji wan 2 bergên Şerefnameya Şerefxanê Bedlîsî." Pirtûkxaneya Seydo tena pirtûkxaneya Kurdan e li Essen û derdoran û ew bêtir pirtûkên xwe ji çapxaneya Medbolî ya Misrê tîne: "Ew li ser Kurdan dinivîsin û dibêjin eslê me jî Kurd e, herwiha pirtûkên wan erzan in û anîna wan jî hêsan e." Ji bilî Misrê gelek pirtûkên kurdî ji Başûrê Kurdistanê bajarê Duhokê ji wî re hatine û dixwaze hêjî bîne, ji ber ku "buhayê pirtûkan li Başûr ne giran e, lê rêya anînê tune, ez nizan im çawa bînim?!"

Seydo dixwaze buharê serdana Başûrê Kurdistanê bike û beşdarî pêşangeha pirtûkan bibe, herwiha projeyekî wî jî heye: "Ku aliyek alîkariya min bike, ez ê çapxaneyekê bikirim." Wî eşkere kir ku gelek destxetên helbestan ên mamoste û zanayên Bakûrê Kurdistanê ku dîroka wan vedigere 60 salan, di destên wî de hene ku li çi cihan nehatine belavkirin: "Ez dixwazim wan bikim pirtûk, ji ber ku mixabine berhemên kesên hêja neyên çapkirin."

Di dawiyê de Selahedîn Seydo diyarkir ku ew beşa wî lê xwendî nû û bi armanca nehêştina astengên zimanî yên navbera gelên Ewrûpa de hatiye vekirin: "Ez dixwazim derbarê vê mijarê de gotaran binivîsim, ev ji bo me Kurdan giring e, ji bo ku em û netewên din baştir bikarin bi hev re bijîn."

Ew herwiha dixwaze li ser dîroka Kurd û Kurdistanê pirtûkekê bi zimanê almanî binivsîne, ji bo zarokên Kurdan ên li vir ku tenê almanî dizanin û "herwiha ji bo ku Alman jî baştir bizanin Kurd kî ne."

---



Lêkolînerê Swîsreyî Thomas Schmidinger

Pisporê Kurdan ê Swîsreyî Schmidinger:

# Kurdistana ku Kurd behs dikin, di jiyana wan de pêk nayê

**Lêkolînerê ku bi welatiyên ji herçar perçeyên Kurdistanê re axiviye, dibêje bûyerên siyasî yên li Kurdistanê bandoreke rasterast li civata kurdî ya li Viyenayê dikin.**

**Sîrwan H. Berko** Viyena

Bi salan e Thomas Schmidinger (37) xwe mijûlî Kurd û Kurdistanê dike. Lêkolînerê li Enstîtûya Zanistên Siyasî ya Zanîngeha Viyenayê li paytexta Swîsreyê dixebite, ji bilî xebata xwe ya zanistî herwiha damizrêner û endamê komîteya birêvebir a komeleya Leeza ye. Ev komeleya ku di sala 2004'ê de hatiye damezirandin, projeyên ji bo jinan li Başûrê Kurdistanê û ji bo penaberan li Ewrûpayê jî pêk tîne. Ji bilî van xebatan Leeza herwiha agahiyên li ser Kurdên ji herçar perçeyên Kurdistanê dide hev û wan belav dike.

Ji ber ku Thomas Schmidinger li Viyenayê dijî û li vî bajarî hejmareke mezin a Kurdan heye, wî tim ev pirs ji xwe dikir: "Gelo Kurdistana ku Kurd tim behsa wê dikin, bi rastî di jiyana wan a rojane de peyda dibe?" Schmidinger eşkere dike ku berî ku ew vê pirsê ji xwe bike, "ez ji ezmûna xwe ya bi salan ligel Kurdan giham baweriyekê ku Kurd hema bêje xwe mijûlî hevûdu nakin". Ji bo ku ew bersiva vê pirsa xwe bike, Schmidinger lêkolîneke zanistî pêk anî. Ew demeke dirêj diçû çalakiyên Kurdên ji herçar perçeyên Kurdistanê û hevpeyvîn bi bêtir ji 140 welatiyên Kurd pêk anîn. Wî bi taybetî xwest bizanibe ka Kurdên nişteciyên Viyenayê kîjan alavên ragihandinê yên kurdî bi kar tînin û encama lêkolîna wî derket ku cudabûnên li welatên ku Kurdên Viyenayê jê hatine, bandorên cuda li ser wan pêk anîne. Lêkolînerê Swîsrewî ji bersivên Kurdan zanî ku Kurdên li Viyenayê ji sê beşan pêk tên: Kurdên soranîaxêv, Kurdên kurmanc, zazakî- û tirkîaxêv ji Tirkiyê û Kurdên ji Rojavayê Kurdistanê, ku koma herî temenciwan e li Viyenayê. Thomas Schmidinger diyar dike ku Kurdên ji Rojhilatê Kurdistanê û Îraqê bêtir nêzîkî hevdu ne. Ew dibêje ku "wergereke yekser a bûyerên siyasî li Kurdistanê di komelgeha kurdî li Viyenayê de peyda dibe, bi taybetî di nav nifşê pêşî de ji Kurdên li Viyenayê". Wek mînak, perçebûnên partiyan ku li Kurdistanê pêk tên, dibin sedema perçebûnên li Viyenayê jî. Schmidinger du mînakan tîne zimên: "Piştî perçebûna di nav Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê de, grûpa KDP-Îran li Viyenayê jî perçe bû. Herwiha piştî ku Newşîrwan Mistefa dev ji Yekîtiya Niştiman a Kurdistanê berda, li Viyenayê jî hevalên do bûn dijminên herî dijwar."

Thomas Schmidinger dibêje gumanên wî rast derketin, ji ber ku Kurd tim behsa Kurdistanê dikin, "lê ew di jiyana wan a rojane de pêk nayê; her aliyek tenê berê xwe dide herêma xwe."

Li ser zeviyeke 1300 metre û bi 250 hezar Euroyan

# Li Kalkar Mala Êzîdiyan tê avakirin



**Kurdên Êzîdî li navçeya Kleve ya Almanya erdek kirîne û mijûlî avakirina komeleyeke taybet in. Ew texmîn dikin ku wê 250 hezar Euro lê xeric bibin. Serokê Komelê dibêje ew ê bi xwe vî karî bikin û bêtir Êzîdîtiyê bidin pêş, "ji ber ku Êzîdî rûbirûyê tewandinê tên."**



Serokê Mala Êzîdiyan li Kalkar, Osman Guden, li nav avahî de nexşeyê malê nîşanî hevkarê Rûdaw dide

**Seral Alîxan** Kalkar

Li bajarokê Kalkar ê girêdayî bajarê Kleve yê rojavayê Almanya, Kurdên Êzîdî malekê ji xwe re ava dikin. Rûdawê serdana wan kir û derbarê armanc û taybetmendiya vê malê bi serokê Komelê re ev rapor amadekir. Di serî de Serokê Mala Êzîdiyan a li Kalkar, Osman Guden, ku bi eslê xwe ji qeza Bişêriyê ya girêdayî bajarê Batmanê yê Bakûrê Kurdistanê ye got "ev mal jî weke hemû malên din ên Êzîdiyan wê bibe mala Êzîdîtî û Kurdîniyê." Lê Guden eşkere kir ku ew ê bêtir Êzîdîtiyê bidin pêş "ji ber ku Êzîdî li vê derê rûbirûyê tewandinê tên."

Li gor zaniyariyan li Kalkarê derdora 50 malbatên Êzîdiyan hene, li Kleve jî bêtirî 2 hezar Êzîdiyan dijîn û li wê navçeyê çend komeleyên Êzîdiyan hene. Osman ku 30 sal in li Almanya dijî, dibêje ku herçend mal û komele hebin baş e, "kesên têgihiştî piştgirî didin me û dibînin ku hebûna malên Êzîdiyan tiştekî baş e ji bo parastina kulturê, lê hin kesên ku siyasî difikirin, antîpropaganda dikin û dibêjin malên Êzîdiyan li vir hene û ne pêwîste malên din bên avakirin."

Derbarê erdê ku mal li ser tê avakirin û xerciyên avakirinê, Osman Guden ku bi xwe jî xwediyê fîrmayeke avakirinê ye, diyar kir ku wan hezar û sêsed metrên çargoşe yên erdê kirîne û ew texmîn dikin ku wê 250 hezar Euro lê xeric bibe, wî got ku Kurdên Misilman jî piştevaniya wan a manewî dikin, "lê heta niha tenê Kurdên Êzîdî alîkariya madî kirine." Osman Guden herwiha got, "heta ji me bê em ê bi xwe vî karî bikin, lê gava em neçar man em ê alîkariyê ji Hikûmeta Kurdistanê bixwazin û em hêvîdarim ew ê alîkariya me bikin." Guden dibêje ku dostaniya wan li gel hemû aliyan heye û ew bi siyaseta gelê xwe re ne, "lê peywendiya vê malê bi aliyên siyasî ve tune, ev ji mejî û dilê Êzîdîtiyê derdikeve."

Serokê Mala Êzîdiyan li Kalkar bi bîr xist ku wan di sala 1997'an de malek damezrandin, "lê piştî demekê hin aliyên Êzîdî gotin hûn piştgiriya siyaseta Barzanî dikin, em xistin ambargoyê, gef li me kirin û li dawiyê teqe li birayê min jî kirin, vêca em neçar man me dest jê berda." Osman Guden got piştî wê demê wan mal firot Kurdistan TV û niha studyoya wan tê de heye. Li gor Mam Osman ew yekemîn Mala Êzîdiyan bû ku weke milk li ser navê Êzîdiyan hatibû qeydkirin, "me ew çêkir, li pey wê li Oldenburg, Seele, Emmerich, Wesel, Solingen û hwd. hatin damezrandin." Guden amaje da ku ev mala ew niha avadikin berdewamiya mala Êzîdiyan a berê ye, "wê demê me soz dabû ku em ê vê malê dîsan avabikin û va em soza xwe bicî tînin."

Armanca avakirina vê malê, wek ku Guden dibeje, perwerdekirina zarokan e, ji bo ku ziman, welat û gelê xwe ji bîr nekin, "ku em vî karî nekirin wê zarokên me li Ewrûpa bitewin." Osman herwiha got ew dixwazin ku Almanî Kurdan û Êzîdiyan nas bikin û têkilî di nabera wan de çêbibin û, "em bibin pir di navbera wan û welatê xwe de jî."

Guden behsa wê yekê jî kir ku malên din ên Êzîdiyan jî gelek xizmet kirine, lê taybetmendiyeke mala wan heye: "Avahiyê vê malê weke malên din nehatiye kirîn, lê ji esas û nexşeyê xwe ev mal ji aliyê Êzîdiyan ve hatiye danîn ku li gor pêwîstiya Êzîdîtiyê be û bi kêrî merasîm û çalakiyên Êzîdiyan tê çêkirin." Di mala Êzîdiyan li Kalkar de 4 salonên mezin û biçûk ji bo çalakiyên taybet bi Êzîdiyan tên çêkirin: weke bisk birîn, sinetkirin, nîşanî û heta şûştina miriyan û gelek çalakiyên din. Herwiha çalakiyên kulturî yên Kurdî wek sazkirina semînaran û taybet ji bo zarokan, lê dawet lê nayên kirin.

Êzîdiyên Kalkar dixwazin buharê avakirina mala xwe temam bikin, "em dixwazin cejna çarşema sor û serê sala Êzîdiyan ku dikeve meha Nîsana 2011'an, li wir pîroz bikin."

# Komkujiya Dêrsimê dikeve qada navnetewî

**Berlîn (Rûdaw) –** Bi armanca ku komkujiya Dewleta Tirk a di sala 1937 û 38'an de li Dêrsimê pêkanî di qada navnetewî de wek fermî 'komkujî' bê pejirandin, li paytexta Almanya Berlinê koferansek tê lidarxistin. Kesên wek Yaşar Kemal, Gunter Grass û Ahmet Turk jî tevlî konferansê dibin û li vir diaxivin. Wê konferans biryarên balkêş diyar bike û pêşkêşî Dewleta Tirk bike.

Komkujiya ku Dewleta Tirk pêk aniye dikeve qada navnetewî. Di vê çarçovê de û bi dirûşma, "Bila Komkujiya Dêrsimê di qada navnetewî de bê naskirin" di 24'ê Kanunê de konferansek li Berlînê tê lidarxistin. Konfersa ku wê li avahiya parlamentoya Berlînê bicive, ji aliyê Partiya Çep (Die Linke) tê organîzekirin. Saziyên wek Komela Dêrsimê Ji Nû ve Avakirin, Yekîtiya Federasyona Komelên Elewiyan (FEDA), Meclîsa Kurd a Berlîn, Yekîtiya Federasyona Komelên Kurd a Almanya (YEKKOM) û Akademiya Tigris jî piştgirtî didin. Ji bo tevlîbûna



Ismail Parmaksiz

konferansê Nivîskar Gunter Grass, Yaşar Kemal, Hevserokê DTK'ê Ahmet Turk, rojnamevan Cengiz Çandar, Hasan Cemal û gelek kesên din hatine vexwandin.

## 'Dewleta Tirk divê lêborînê bixwaze'

Endamê Komîteya Amadekar Îsmaîl Parmaksiz, armanca konferansê ji Rûdawê re vegot "Dewleta Tirk ev 80 salin li himberî gelê Kurd komkujiyan pêk tîne. Kurdan û navê wan înkar dike.




Recep T. Erdogan dibêje li Dêrsimê 50 hezar kes hatine kuştin û înkara wan jî dikin.

Wek komkujî qebûl nakin û leborînê naxwazin. Em li hemberî zîhniyetek wisa ne. Her roj Erdogan bi şêweyekê diaxive. Wek Suleyman Demîrel, 'do do ye îro îro ye.' Ev gotin naveroka siyaseta Tirkiyê nîşan dide. Tekoşîna me li hemberî vê zîhniyetê ye."

Parmaksiz, derbarê armanca konferansê jî got ew dixwazin ku komkujiya Dêrsimê di qada navnetewî de wek "komkujî" bê qebûlkirin. Parmaksiz got ji bo komkujî wek fermî bê pejirandin ev konferans gava yekemîn e û wiha dom kir: "Heta îro komkujî û îşkenceya li himberî Kurdan pêk dihat di warê yasayî de nediket qada navnetewî. Em jî di vê konferansê de dixwazin viya pêkbînin. Ev konferans ji bo vê tekoşîna destpêkê ye. Gelek pispor û nivîskar tevlî konferansê dibin. Em li ser mijarê guftûgo dikin da ku ji xwe re rêyekî diyar bikin."

Parmaksiz, daxuyand ku yek ji armancên konferansê jî ew e ku Dewleta Tirk, komkujiya 1937-38'an wek "komkujî" nas bike û ji Dêrsimiyan lêborînê bixwaze. "Normên dewletek demokratîk jî xwe ev in. Wê gavê mirov dikare bêje, Tirkiye bûye dewleteke demokratîk. Em ê wê demê ji Erdogan bawer bikin. Heta van tiştan çênebin, em bi axaftinên vala bawer nakin û naxapin. Divê Erdogan li ser navê dewletê lêborînê bixwaze û dewlet jî wek fermî bi boriyê xwe re rî bi rû bimîne."

***Ji bo di konferansê de bibib biryar, Komîta amadekar wê van pêşniyaran pêşkêş bike:***

- *Divê Dewleta Tirk lêborînê bixwaze.*
- *Bûyera Dêrsimê divê wek jenosît û komkujî bê qebûlkirin.*
- *Ji bo gundên hatine şewitandin û kesên hatine qetilkirin divê tazmînat bê dayîn.*
- *Ji bo neviyên kesên ji Dêrsimê hatinê sirgûnkirin, karibin bizivirin ser axa babîrên xwe derfet bên dayîn.*
- *Arşîv û belgêyên qetlîamê bên vekirin.*



Dîlara di kurtefîlmê Çîroka Telefonê (2009) de bi dayika xwe re li ser serpêhatiyen xwe diaxive û xwediyê dukana telefonan jî axaftinên wê bi nehenî dişopîne

## Ji dikên şanoyê ber bi kamerayê ve

# Hêvî Dîlara: Stêrka hêvî û tekoşeriyê

Hêvî ji bo azadiya gelê xwe her tim weke navê xwe bi hêvî xebitiye. Jineke tekoşer a Kurd, lê niha penaber e. Ji ber terora dewleta Tirk a li ser Kurdan mecbûr maye were Ewrûpayê. 15 sal in li Îtalyayê dijî. Di nava saziyên civakî de cihê xwe girtiye û heta niha li Îtalya di lidarxistina bê hejmar a civîn, konferans, şahî û gelek çalakiyên din de rêbertî kiriye. Ji ber tekoşîna wê ya mafê mirovan û Kurdan gelek xelatan wergirtine. Bi gelek kesên payedar re hevdîtin û nasandin çêkiriye. Li ser navê jinên Kurd di sala 1998'an de li Vatîqanê bi Papa Jean Paul ê II. re hevdîtin pêk anî, bi xelatgirtê Nobelê Dario Fo, gelek parlamenter û rojnamevanên Îtalî re têkiliyên dostanî çêkiriye. Kovara navdar Marie Claire cîhekî girîng ji bo jiyan û tekoşeriya wê veqetand, derhênerê navdar Massimo Ghini jî bi piştgiriya Wezerata Çandî ya Îtalyayê senaryoya jiyana wê nîvîsand. Hêvî bi zimanê îtalî û kurmancî gelek helbest nivîsandine. Di 25 festîvalan de helbestên xwe bi zimanê îtalî pêşkeş kiriye.

Helbestên wê di gelek pîrtûkan de weke pêşgotin hatine weşandin. Herwiha artîst û dengbêja Îtalî Elîsa helbesta wê ya bi navê 'Hesret' bi muzîkeke taybet di qaseta xwe de weşandiye. Niha jî Hêvî Dîlara li pêş kamerayê ye. Di filmê dirêj ê îtalî bi navê 'Medicina Generale' û fîlmê kurt ê kurdî bi navê 'Çîroka Telefonê' de leyîst. Niha ji bo fîlmekî din ku wê ji aliyê televîzyona Îtalî Rai bê kişandin, amadekariyên xwe dike. Me jî li ser tevahî xebat û jiyana wê hevpeyvînek bi Dîlara re çêkir.

**Hêvî tu dikarî hinek behsa binhega vê jiyana bireng û tekoşer bikî?**

Ez ji Siwêrekê me, lê li Edenê hatime dinê. Ji ber rewşa malbata min a siyasî me gelek sirgûn ditiye. Min tenê 11 sal dibistan xwend. Ji biçûkatiya xwe de ez tevlî xebatên çandî û hunerî bûm. Di sala 1989'an de di şanoya Helepçê de cara yekem derketim ser dikê. Di bin bana NÇM'ê de ev xebatên min berdewam bûn. Lê mixabin ez di emrê xwe yê pir ciwan de mecbûr mam derkevim Ewrûpayê. Li Îtalya weke penaber min jiyan û xebatên xwe berdewam kir.

### "Welidandina diya min, ji min re bû mînak"

**Li Îtalya tu weke jineke Kurd tevî xebatên xwe yê mafên mirovan, bi aliyê xwe yê helbestvanî jî tê nasandin. Lê niha jî li pêş qamerayê yî....**

Êrê. Di sala 2007'an de ji aliyê derhêner Luca Ribuoli fîlmê bi navê 'Medicina Centrale' hat kişandin. Lîstikvan piranî Îtalî ne, lê çîrok li ser Kurdan derbas dibe. Lewma ji min re gotin 'di film de weke rolê duyem tu dikarî rolê dayika Kurd bilîzî.' Min senaryo xwend. Ji bo êşa gelê Kurd dikşîne bi raya giştî bê gihandin, ev derfetekî baş bû. Min berê şano leyistibû, lê ne bes bû. Lewma ji aliyê Neu İmage min perwerda leyistikvaniyê dît.

**Te zehmetî kişandin?**

Na. Ji ber ku min zimanê wan û çanda wan zanibû. Ev avantajek bû ji bo min. Ez zû ketim atmosfera film. Lê di cihekî de min zehmetî kişand. Ew jî beşa welidandina zarokê bû. Tam rojekê ez qêriyam, ji bo ku baş bê kişandin. Dû re derhêner ez girtim birim mala xwe, fîlmek bi min da temaşekirin. Di film de jineke bi dizî diwelidî. Ev jî zehmet bû, lê baş hatibû leyîstin. Derhêner ji bo ku min amade bike gelekî mijûl bû. Lê welidandina diya min jî ji min re gelek bû alîkar. Ez dema zarok bûm, dema diya min li ber welidandinê bû û tenê ez li cem wê bûm. Ew êş û qêrînên diya min qet ji bîra min û pêş çavên min neçûn. Bi alikariya diya min ez bi serkeftî leyîstim û derhêner jî ez pîroz kirim.

**Di 'Çîroka Telefonê' de tu rastî çi hatî?**

Bi Nazmî Kirik re weke keçeke Kurd a penaber, a bi navê Leyla, di rolê sereke de ez leyîstim. Lê ez di vî fîlmê de lîstikvaniya xwe rexne dikim. Di fîlm de gelek monolog hebûn û min nikaribû dengê xwe baş bikar bînim. Mînak: Nazmî Kirik bi salan perwerda şano dîtiye û baş dizane dengê xwe bikar bîne. Min xwest ez weke wî fîlmê Îtalî bikevim atmosfera qehremanê senaryoyê, lê di vî fîlmî de ez zêde serkeftî nebûm. Tevî van rexneyan dîsa jî Çîroka Telefonê di gelek festîvalên fîlm yên navnetewî de cîh girt. Li Londra, Parîs û gelek derên din gelek xelat girtin.

**Lîstikvaniyê bandorek çawa li ser te çêkir?**

Bandoreke pozîtiv çêkir. Ez bi rengekî din êdî li wêneyan an jî fîlman dinêrim. Tenê ne bi hestan, bi çavên teknîkî jî dinêrim û rexne dikim. Carnan dibêjim baş-nebaş, mezin-biçûk, min hinek tiştên xweş kirin û naxwazim wisa jî berdim. Heta derfet hebin ez ê berdewam bikim. Ez bi xwe naçim lê nagerim. Heta niha jî ez li pey ti kesî negeriyam û negot ka ez dikarim di fîlmê we de bîlizim an na? Di du fîlman de min leyîst, niha wê ji bo yê sêyem amadekarî bên kirin. Ez li wan negeriyam, ew hatin ez dîtim. Ji xwe jiyana min a lîstikvaniya fîlman jî wisa pêşket. Lê ger sibê senaryoyeke baş li ser Kurdan bê nîvîsandin, ez ê bixwazim di wî fîlmî de bileyîzim.

**Ji vir û şûn de wê xebatên te çawa berdewam bikin?**

Ez bûm xwediyê gelek ezmûnên bi wate. Aliyekî tu dibêjî ez xwe pêş bixim, li aliyekî jî tu dibêjî ez bûm pirek ji bo êşa ku gelê min dikşîne bigihînim raya giştî. Ev hestên xweş in, moral dide mirov. Yanî ji bilî qariyerê, min xwest ez lîstikvaniya xwe pêş bixim. Ji xwe ev xeyala min a zarokatiyê bû, armanca min a sereke bû. Niha bi min re daxwazek wisa jî pêşket. Her fîlmekî Kurd bi min re hestên taybet pêş dixe; weke ku fîlmê min bixwe ye, ez tê de leyîstime... Bi riya saziya me ez dixwazim filmên Kurdan, derhêner û artîstên Kurdan bi raya giştî bidim nasîn.

**Navê saziya we çi ye?**

Europa Levante (Europa û warê bilindbûna Rojê). Di sala 2001'an de ji aliyê 10 kesan ve hat avakirin. Hemî Îtalyan in, tenê ez Kurd im. Niha ez Festîvala Fîlmên Kurdî organîze dikim. Îsal di 9, 10 û 11'ê Kanûnê de li Roma tê lidarxistin.

**Çend film wê werin pêşkeşkirin? Çiqas serlêdan hene?**

Gelek serlêdan çêbûn. Filmê bi metrajên kurt û dirêj, herwiha belgefîlm jî di nav de hene. Me hilbijartin. Mînak filmê Ayten Mutlu yê bi navê Zara, Keçikên Dersimê yên Wendayî, Evdalê Zeynikê, Kevoka Spî û gelek fîlmên din.

*Hevpeyvîn: Arjin Yaman*



## Evdal ji Hollywôodê xelat wergirt

*Belgefîlmê derbarê jiyana dengbêj Evdalê Zeynikê de, ku ji aliyê derhênerê Kurd Bulent Gunduz (foto) ve hatiye kişandin, li Hollywoodê xelata "Taybet a Jûrî" û xelata "Fîlma dirêj a herî baş" wergirt. Merasîma dabeşkirina xelatên Festîvala Fîlman a International Independent a New Yorkê li Hollywood, li Beverly Hills hat lidarxistin. Di merasîmê de xelatên ku di navbera 21 û 29'ê Tîrmeha 2010'an de hatibûn diyarkirin, hatin dabeşkirin. Fîlmê "Evdalê Zeynikê" li Sri Lankayê xelata "belgevara herî baş a biyanî" û li Îrlandayê jî xelata "belgefîlmê herî baş yê navnetewî" wergirtibû. Li Tirkiyê rê nedan ku ev fîlm beşdarî Festîvala Porteqala Zêrîn a Antalyayê bibe.*



# Rengên Mezopotamyayê li Rojava vebûn!

**Hamburg (Rûdaw) -** Rengên Mezopotamya li bajarê Almanya Hamburgê vedan. Modevana Kurd Încî Hakbîlen, bi salan e li ser kincên Kurdan, yên nûjen kar dike. Hakbîlen, heta îro li çend bajaran peşangehan li darxistî ye û dibêje: "Xeyala min a herî mezin ew e ku, rojek li Amed û Hewlêrê defîleyek vekim."

Modevana Kurd Încî Hakbîlen, cil û kincên Kurdan, yên klasîk bi awayeke nûjen çêdike û derdixe holê. Hakbîlen, Kurdeke ji Anatoliya navîn e û di sala 1964'an de li Enqerê hatiye dinê û 29 sal e jî li bajarê Hamburgê dijî. Li gor gotinên Hakbîlen ew zedetir 30 sal in bi karê modevaniye re mijûl e. Wê, heta niha bi kesên wek Vera Hahnel û gelek kesên din ên navdar re kar kiriye û di nav gelek projeyên peşangehên navnetewî de cîh girtiye.

Hakbîlen dibêje ku ji destpêkê de, armanca wê ew bû ku, kinc û cilên Kurdan bi awayek nûjen û hemdem çêke û tiştek nû derxe holê. Hakbîlen wiha dibêje, "Ez dixwezim cil, reng û motîvên Kurdan, di cîhana modevaniyê de bidim nasîn."

### Dixwaze li Amed û Hewlêrê defîle veke

Încî Hakbîlen, dibêje ku wê pêşangeha xwe ya yekemîn di sala 2009'an de li bajarê Hamburgê, ya duyemîn jî 2010'an de dîsa li Hamburg û Nurnbergê vekirîye, ew hewldide xwe ku di Adara 2011'an de jî peşangehek li Berlînê veke. Bê guman ev peşangehên ku heta îro hatine vekirin, ji bo modevan Hakbîlen, girîng û bi wate ne; lê ya herî girîngtir û bi wate ew e ku gava ew li Amed, Merdîn û Hewlêrê peşangehek veke: "Wê gavê ez ê ji heyecanê bifirim. Projeya 'Rengê Mezopotamya' bi salan e di dilê min de xeyalek mezin bû." Hakbîlen bi van gotinan behsa proje ya xwe dike: "Min her tim ji xwe re digot, ez ê rojek van kinc û rengên xemilî bi şêweyeke modern nîşanî cîhanê bidim. Lê gelek dereng mam. Min heta niha li ser kincên şanoyê, modaya klasîk û modern kar kir. Ji ber wî heta niha ev proje pêk nehat. Ji ber pirsgirêkên aborî û gelek tiştên din, min hertim ev peşangehan paşve xist. Lê di sala 2009'an de min projeya xwe pekanî." Hakbilen dibêje ew gelek kêfxweş e ku projeyekî wisa daye destpêkirin û di 6 mehan de nezikî 60 kinc dirûtiye.



Di defîleya Hamburgê de 11 keçên Kurd 60 cilên ku Încî Hakbîlenê dirûtiye, pêşkêşkirin

Di pêşangehê de 11 keçên Kurd, wek manken rol girtine. Li gor gotinên Hakbîlen, ew keçên manken demeke dirêj li ser mankeniyê perwerde dîtinê û nêzîkê 30 kes di nav vê projeyê de kar dikin. Li ser pirsa me ya, "Ji bo çûyina Amed û Hewlêrê ti hewldanên we hene?" Hakbilen, wiha bersiv dide: "Niha têkiliya me bi şarederiya Amedê re heye. Serokê Şarederiya Yeni Şehîrê Zeki Dogrul, em dewet kirin. Gotin 'emê alîkariyê bidin we.' Lê ew jî hat girtin. Niha di zindanê de ye. Lê ji bo konsepta Hewlêrê jî hewldanên me didomin."

Încî Hakbîlen, dibêje li cem wê bi giştî 100 modelên cuda hene û di koleksiyona wê ya nû de jî, zêdetir cilên Colemerg, Mêrdîn, Rojhilat û Başurê Kurdistanê û gelek modelên sentez jî hene. Hekbîlen, wiha dibejê: "Hewldana min ew e ku orjînala wan neyê xirabkirin û bi awayeke modern bên çêkirin. Lê pirsgirêka me ya herî mezin qumaş e. Em qumaşê kincan ji Kurdistanê tinin, ew jî gelek zehmet e."

### 'Ez dixwazim Kurd van cilan lixwe kin'

Modevana Kurd Încî Hakbîlen, gelek xemgîn e, li gor wê ev cilên Kurdan li Ewrûpayê nayên lixwekirin û hedî hedî tên jibîrkirin. Wê ji bikaranîna kincan ji xwe re kiriye armanc.

Hakbîlen wiha dawî bi axaftina xwe anî: "Ciwanên Kurd ên li Ewrûpayê dijîn ne wek ên li welat in. Hedî hedî cil û çanda Kurdan jibîr dikin. Ez dixwazim cil û kincên Kurdan bi awayeke modern çêkim û bi ciwana bidim hezkirin. Di serî de ti eleqe tune bu. Lê îro kêm be jî kesên ku van cilan li xwe bikin hene. Ev peşangeh li xwe kirina kinc û cilên Kurdan bi gel dide hezkirin."

Hakbîlen dibêje, ew kincên ku çêdikin jî li ser siparîşan difiroşin û ne zêde biha ne.

**Hekîm Sefkan**



## Rewşa drama kurdî

Carinan ku mirov dibêje filan tişt tune, qiyamet radibe. Hinek dibêjin romana kurdî tune, hinek dibêjin çîroka kurdî tune, yan jî muzîka kurdî miriye. Ev hevok bê guman mirov vediciniqîne, bi taybet kesên ku wî karî dikin, pir hêrs dibin. Helbet di hêrsbûna xwe de mafdar in. Loma ez înkarkirina tiştan ji kokê ve şaş dibînim, ji ber wê yekê jî di dawiya gelek nivîsên xwe de ez dibêjim "şaş neyê famkirin". Û ji bo ku şaş neyê famkirin, ez ê nebêjim drama kurdî tune, lê ez ê bêjim ku rewşa drama kurdî pir zor e, li ser rehekê ye. Mixabin ku bihêz nabe, lê baş e ku ew reh jî naqete.

Niha eger ku em kanalên tv yê Tirkan, ku bi kurdî weşanê dikin, jî bavêjin ser, hejmara tv yên kurdî bêhtirî 20 kanalan e. Ev hejmar ji bo miletekî bindest û ne azad, şoreşeke mezin e, heta mirov kare bêje xewnek e.

Li aliyê din ku mirov li demê dinêre, hêsanbûna teknîk, derfetên fereh, mirov vê rojê pir normal dibîne, kesek jî kare kanalekî tv bi perê hindik veke. Incex naveroka weşana wan girîng e, ji bo ku em di nava detayan de wenda nebin, em ê tenê di van kanalan de rewşa drama kurdî bidin dest xwe.

Gelo tv'yên kurdî temaşevanên xwe têr dikin? Bi yek gotinê, na! Ji ber ku nasnameya tv'yên kurdî propaganda ye. Di beşê hunerî de tenê muzîk û şahî ne. Loma jî dema ku rêzefilmeke di kanaleke erebî yan jî tirkî de derdikeve, heta dereceya tunebûnê kanalên kurdî temaşevanên xwe wenda dike û divê tv'yên kurdî vê rastiyê bibînin û bipejirînin, lê divê danequrtînin.

Li Ewrûpayê hejmareke hindik be jî derhênerên Kurd hene, kesên bi sînemayê re mijûl dibin hene, lê mixabin bazara sînema û drama kurdî li ber mirinê ye, ez nabêjim miriye ji ber ku gotûbêj li ser hene û danûstandin li ser miriyan û tiştên mirî nabe.

Derhênerên Kurd di bazarên derve de ne, ji ber ku saziyeke hilbirînê ya drama kurdî tune. Ku hebe jî lokal û teng dimîne. Derhêner heta radeyekê mafdar in ku xwe nêzîkî bazara dinyayê dikin, ji ber ku li wir jî cih negirin, hunera wan dimire û bê wate dimîne. Tunebûna derfetan wan dûrdixin, dûrketina wan jî qada dramayê jar, qels û vala dihêle. Saziyên hilbirînê ku hene, tenê ji bo videoklîpan in, ew jî berî niha me bahskiribû bê çi klîp in.

Tenê çend festîvalên filmê kurdî çêdibin, ew jî ne jin, ne mêrên mezin ne jî zarok temaşe nakin, bi gotineke din fîlmên kurdî ji bo biyaniyan e.

Li gorî tecrûbeya min di tv de, ji bo bernameyeke showtalkshow saet û nîvek, yan jî du saet demê dadigre, carina heta 5 hezar Euro xercdibû, ev reqem ji bo tv'yên welatên din cihê pêkenînê ye, lê ji bo Kurdan bê guman gelek e. Ew bername carekê jî dihat dûbarekirin û piştre diket refên arşîvê. Eger perên çar bernameyan bixî ser hev, rehet li studyoyên tv rêzefilmên civakî, ku zêde cih naxwaze dikare bê hilbirîn. Incex bawerî, cesaret pêwîst e, wiha jî mantiqê ku huner tenê stran e ji navê rabe. Drama weke pêwîstiyeke lezgîn ji temaşevanên Kurd re divê. Divê guh û çavên temaşevanên Kurd fêrî drama kurdî bibin. Wiha mirov dikare rê li ber asîmîlasyon û reşkirina Kurd û kurdî bigre.



# Nanê tenûrê bû reqîbê nanê firinê

“Kurd dikarin vî nanî li cîhanê bikin marqeyeke kurdewar. Çawa ku miqerne bûye sembola Îtalyayê, wê nanê tenûrê jî Kurdistanê bîne bîra mirov.“

**Amed (Rûdaw) -** Li Amedê bi dehan zarok li kuçe, kolan û bazarên herî qelebalix bi firotina nanê tenûrê debara malbata xwe dikin. Kesên ku hînê nanê tenûrê bûne, êdî nanê firinê naxwin.Li Taxa Gazîlera ku ji Deriyê Çiyê diçe Çarşiya Şewitî, bi dehan zarok bi erebokên destan nanê tenûrê difiroşin. Zarokên ku danê êvarê bi dengekî bilind “Werin, werin nanê tenûrê” diqîrin, danek diçin dibistanê û danek jî li dibistana jiyanê, pere qezenç dikin. Dayikên zarokan her roj li Mala Tenûrê ya Şaredariya Bajarê Mezin a Amedê nan li tenûrê dixin û zarokên wan her roj piştî nîvro li derdora Xana Hesen Paşa, Çarşiya Şewitî, Mizgefta Mezin û Çarşiya Eşêfçiyan digerin û bi firotina nan, heqê nanê mala xwe derdixin. Yek ji zarokên nanfiroş Tugba Yas (12) ku ji Şemrexa Mêrdînê ye, rojê 20-30 nanan difiroşe. Keçika biçûk ku di pola 6. de dixwîne û 2 xwîşk û 3 bira ne, heba nên bi lîreyek difiroşe. Keçika nanfiroş ku ji Rûdawê re axivî, wiha behsa vê xebata xwe kir: “Eta min 2 sal ji min mezintir e, xwîşkeke min jî nivîşkan e, seqet e. Du zarok jî ji min biçûktir in. Xaniyê me kirê ye. Bavê min jî li aşxaneyan fîraqan dişo. Nikare debara mala me bike. Ji ber vê yekê diya min nan li tenûrê dixe û ez jî nanê tenûrê bi ereboka destan difiroşim. Piştî bavê xwe, semyana malê ez im. Hinek meh ji bavê xwe zêdetir jî qezenç dikim.”

Yek ji zarokên nanfiroş Nurullah Ozdemîr jî 12 salî ye. Ew jî weke hevala xwe Tugba dixwîne û diçe pola 8’an. Nanfiroşê biçûk ku birayê xwîşkek û 3 kurikan e, li Taxa Koreyê rûdinê. Her roj 60 nanan li ereboka xwe dike û ji Taxa Koreyê heta Çarşiya Şewitî tîne. Ji ber ku bavê wî di înşeatan de dixebite û tim kar tune ye, neçar dimîne ku alîkariya bavê xwe bike û ji bo jiyaneke baştir li kuçeyan bixebite. Ew jî nanê gilover ê tenûrê difiroşe. Ji ber ku nanê wî biçûktir in, ew heba wan bi 500 qirûşî difiroşe. Nanfiroşê biçûk, daxwaza xwe ji me re wiha vedibêje: “Ez hem dixebitim û hem jî dixwînim. Eger tiştekî bi bavê min neyê, ez ê heta dawiya emrê xwe bixwînim û bibim kesekî pir pêşketî. Lê ku tiştek bi serê bavê min de bê, ez ê neçar bimînim dev ji dibistanê berdim û tenê ji bo debara malê bixebitim.”

## ‘Bila nanê tenûrê bibe marqeyeke Kurd’

Ezîze Morkaçak her roj ji van zarokan nanê tenûrê distîne, ferqa di navbera nanê tenûrê û firinê de wiha vegot: “Nanê firinê yê somin ne xweş e. Bes nanê Amedê xweş e. Lê yê tenûrê ji herduyan jî xweştir e. Heta ku nanê tenûrê hebe, ez nanê firinê naxwim. Piraniya kesên ji taxa me û hevalên min, her roj nanê tenûrê distînin. Eger derfet bê dayîn, bawer dikim nanê tenûrê wê ji yên firinê baştir bê firotin. Ger Kurd îmkanan ava bikin, dikarin vî nanî li cîhanê bikin marqeyeke kurdewar. Çawa dibêjin miqerne, Îtalya tê hişê mirov, dema bêjin nanê tenûrê jî, wê Kurdistan bê bîra mirov.”

# Ji sedî 8’ê Kurdan bi nexweşiya şekir ketine

**Bîlal Seîd** Hewlêr

Li gor îstatîstîkên navendên çareserkirina nexweşiya şekir, îsal nêzîka 20 hezar kes li Herêma Kurdistanê bi nexweşiya şekir ketine. Pisporên naxweşiya şekir jî dibêjin ku ji sedî 8’ê danişţvanên Kurdistanê bi nexweşiya şekir ketine.

Nexweşiya şekir ji ber nebûn an kêmbûna hormonê ensolîn, ji encama zêdebûna astê rêjeya şekir di nav xwîna mirov de çê dibe. Li gor îstatîstîkên cîhanî, li Ewrûpa ji sedî 3, li Amerîka jî ji sedî 5-10 kes nexweşiya şekir bi wan re heye. Li gor rapora Wezareta Tendirustî ya Îraqê di sala 2008’an de nêzîka ji sedî 10.4ê hevwelatiyên Îraqê yên ku temenê wan di navbera 25-65 salî de ne, nexweşiya şekir bi wan re hebû. Li Kurdistanê jî tê texmînkirin ji sedî 8’ê daniştvanan nexweşiya şekir bi wan re heye.

Berdevkê Wezareta Tendirustî Xalis Qadir derbarê rêjeya nexweşên şekir, ku pisporên warê tendirustî behs dikin piştrast kir û got: "Li gor serjimêriya ku Wezareta Tendirustî ya Îraqê weşand rêjeya kesên bi nexweşiya şekir ketine li Iraqê û Kurdistan jî di nav de ji sedî 10 e, angî mirov dikare bêje ku niha rêje li Herêma Kurdistanê zêdeyî ji sedî 8 e."

Li parêzgeha Hewlêrê 9 hezar nexweşên şekir hene, sala borî tenê 6 hezar kes bûn. Li Dihokê tenê li gor hejmarên îsal 4700 kes nexweşên şekir in, lê sala borî ev hejmar 3200 bû.

Li gor rapora dawî ya WHO, jimara kesên bi nexweşiya şekir ketine li cîhanê digihe 220 milyon kesan.

## Tendirustî

# Zekem

Demsala zivistanê gelek nexweşiyan bi xwe re tîne. Ji ber guherandina rewşa xwezayî, civakî û fizîkî mirov nikarin xwe li himberê nexweşiyên jihevgirtinê baş biparêzin. Ev nexweşî piraniya wan ji infeksiyonan pêktên, ango nexweşiyê mikrobîk in. Bi taybetî li cihê wek dibistan û kargeha (ji ber ku mirov bihev re tevdigerin) nexweşiyên jihevgirtinê jî hîn zûtir dikarin xwe belav bikin.



Dr. Xoşnav Seyîd Mihemed

**Serma girtin çî ye?**

**Dr. Xoşnav Seyîd Mihemed:** Serma girtin ji mikrobên pir biçuk çêdibe, ji ber wê ye ku zivistanê pir tê xuyakirin. Nêzî 200 şêweyê virusan hene; her yek ji wan jî dibe sedema nexweşiyan. Nexweşiya zekemê jî di vê grubê de cihê xwe digire. Dema ku mîkrob xwe derbasî bedena mirov dike di nava çend rojan de nîşanê nexweşiya xwe diyar dike. Çend mînakan jî mirov dikare wiha rêz bike. Herikandina bêvilê, êşa qirikê, kêmbûna bêhnkirin û tahmgirtina xwerinan, kêmbûna germahiya canê mirov... Herî pir ev nîşan derdikevin pêşberî mirov.



**Bi kîjan rêyan nexweşî derbasî mirovên din dibe?**

Nexweşî bi rêya nefesgirtin û stendinê derbas dibe, lê tiştek ku di berçav de nayê derbaskirin ku bi rêya destê gemar jî derbasî kesê din dibe. Wextê yek bi nexweşiyê dikeve bêvila wan diherike, bi taybetî zarok nikarin xwe baş biparêzin; av ji bêvila wan û devê wan tê, ev jî dibe sedema ku nexweşiyê li derdore xwe belav bikin. Wextê ku destê wan bigihe xewlî û pêdiviyên ku mirov rojane bikartînin hingê mîkrob xwe zû bicîh dikin û nexweşî derbasî kesê din dibe.

**Divê mirov xwe çawa biparêzin?**

Di serî de ji bo xwe ji nexweşiyê biparêzin, paqijiya dest pir girîng e, xwe ji cihê girtî û yê kesê nexweş lê ne ,dûrbixin, li hemberî sermayê tedbîrê xwe yê şexsî bigrin ango cilê germ li xwe bikin. Di tedawiya zekemê de cihê antîbiyotîkan tune, ji ber ku antîbiyotîk virusan nakuje. Lê kesê nexweş dikare hebên êş kêmkirinê bigre; vîtamîn û derman dibe hinek bibin alîkar. Jixwe nexweşiya zekemê di nava hefteyekê de divê derbas bibe. Dema ku di nava hefteyekê de baş nebe divê ew kes xwe nîşanî bijîşk bidin, ji ber zarok û mirovên pîr û kal binya wan zîîf e û zû baş nabin, hingê pêwîstî bi tedawiyê heye. Bi piranî insanên me nexweşiya zekemê pir cîdî nagrin, lê dema ku mîkrob ji bedena wan neqedin hingê ew nikarin ji nexweşiyê jî xilas bibin. Zarok ku zekem girt pêwîst e wan neşînin dibistanê; him zarok zû nayê serxwe û him jî dibe sedema ku zarokê din ji wan nexweşiyê bigrin. Pêşniyara min ji dê û bavan re ev e: Berî zaroka wan nexweş bikeve hewil bidin fêkî bidin xwarin, wextê ku sîstema bedena wan xurt bê hingê wê mîkrob û vîrus nikaribe wan bêhêz bike.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

*Dr. Xoşnav Seyîd Mihemed ji Rojavayê Kurdistanê ye. Niha li Almayayê dijî û pizîşkê zarokan e.*

# 'Cihûyên Kurdistanê li Îsraîlê jî Mihemed Arif Cîzrewî guhdar dikin'



Serokê Komela Dostaniya Îsraîl-Kurd, Dr. Mordechai Zekan dawiya meha Cotmehê ji bo semînereke derbarê "Kurd û Cihû li Rojhilata Navîn" de hatibû Berlînê. Dr. Mordechai Zaken zarokek ji malbatek Cihûyên Kurdistanê ye. Zekan daxuyand ku Kurd û Cihû bi hezaran salan di nav aştiye de bi hevre jîyane û Cihûyên Kurdistanê ku niha li Îsraîlê ne, bi çanda Kurdî dijîn û stranên Mihemed Arif Cizrewî guhdar dikin.

Berlîn beriya şerê cîhanê yê 2'emîn wek navenda Cihûyan dihat naskirin. Piştî şerê cîhanê yê 2'emîn bi sedhezaran Cihû ji aliyê Naziyan ve hatin kuştin û malê wan hatin talan kirin. Dr. Zaken li vî cihê ji bo Cihûyan xwedî dirokek reş û giring bi hesten germ bersîva pirsên me da.

**Cihû kengê hatin Kurdistanê?**

Cihû berî du hezar salan hatin Mezopotamyayê. Gava ji aliyê împaratoriya Rojhîlata Navîn û Asuriyan de welatê wan hat dagirkirin. Wê gavê Cihû hatin Mezopotamyayê. Di Tewratê de behsa Ava Xavurê (Xabûr) tê kirin. Tewrat dibêje: "Cihû hatinê dev û dora vê avê."

**Mirov dikare ji bo vê cîvakê kîjan navê bikar bîne: Kurdên Cihû? Cihûyên Kurdistanê?**

Kurdên Cihû ne rast e. Ya rast ev e: Cihûyên Kurdistanê. Ji ber Cihû ne Kurd in. Ew bi hezaran salan li Kurdistanê û di nav Kurdan de jîyane. Gava welatê wan Îsraîl ava bû, ew vegeriyan. Ji ber bi hazaran salan li Kurdistanê jiyane, ji bo wî jî hezkirina wan ji Kurdistanê re heye.

**Ev Cihû kengê û çawa vegeriyane Îsraîlê?**

Dema dewleta Îsraîlê di sala 1948'an de ava bû, wê deme jî rewşa Cihûyan li Sûrîyê, Îraqê gelek xirab bû. Ereb zilm li wan dikirin, mal û milkên wan dişewitandin. Ji ber wî, bi alîkariya dewleta Îsraîlê, ev Cihû ji wir di sala 1951'an de derketin û vegeriyan welatê xwe. Malbata min jî di nav vê cîvakê de bû.

**Niha li Îsraîlê çend hezar Cihûyên Kurdistanê dijîn? Gelek nêrîn hene, li gorî hinek kesan 150, li gorî hinekan jî 200 hezar kes.**

Li gor min, îro li Îsraîlê 150 hezar kes dijîn.

**Ev cîvak pirsgirêka Kurd çawa dibîne? Piştgiriyê dide tekoşîna Kurdan a li hemberî dewletên heremê yan na?**

Ev cîvak rewşa Kurdan ji nêz ve dişopîne. Sempatiyek wan a gelek mezin heye ji tekoşin û doza Kurdistanê re. Û piştgirî didin tekoşînê.

**Piştgiriyeke çawa?**

Meşan li dar dixin, doz û dewa Kurdan bi gelê Îsraîlê, bi rêya nivîs û hwd. didin nasandin. Ev tişt ji bo sîyaseta Îsraîlê gelek girîng e. Çanda Kurdan, muzîka kurdî û xwarina Kurdan bi Îsraîliyan didin nasîn.

**Xuya ye ev cîvak çanda Kurd ji bîr nekiriye...**

Na na... Ev civak bi çanda Kurd dijî. Muzîka kurdî tê guhdar dikin. Mehmed Arif Cîzrewî, Hesen Cîzrewî ji aliyê her kesî ve tên guhdarkirin û gelek bi nav û deng in. Ji xwe ji van herdu hunermendan re dibêjin Hemo û Huso. Wekî din hunermenden Kurd ên di nav Kurdan de nayên guhdarkirin li vir tên guhdarkirin û ecibandin. Dikarim bêjim ku di her malekî de muzîka kurdî tê guhdarikirin. Herwiha di rojên taybet û olî de, di pîrozbahiyên girseyî de muzîka kurdî tê guhdarkirin û xwarina kurdî tê xwarin.

## "Di rojên reş û tarî de Kurdan ew parastine..."

Kurd û Kurdistan di bîra Cihûyan de çawa maye?

Ji çiyayên Kurdistanê hez dikin, deşt û zozanê Kurdistanê di bîra wan de mane. Di rojên reş û tarî de Kurdan ew parastine û alîkarî danê wan; ew ti carî ji bîr nakin. Rêza ku Kurdan daye wan di bîraniyên wan de ne. Tiştên wisa hertim dubare dikin...

**Malbata we ji ku derê Kurdistanê yê?**

Bavê min ji bajarê Zaxo ye. Dayîka min jî ji Nisêbînê ye. Bavê min behsa gelek bîraniyên baş dikir. Navbera wan û Kurdan gelek baş bûye.

**Kurd Misilman in û Cihû jî ji olek din in. Ev nebûye pirsgirek gelo?**

Ev yek ti carî nebûye pirsgirêk. Lê diz, çete û kesên karên pîs kirine, mal û milkên Cihûyan talan kirine. Ev jî ne ji ber olek cuda pêk hatiye. Ji ber ku Cihû li vir cîvakek zeyîf û bê xwedî bûne. Lê bê guman axa û mîrên Kurdan li Cihûyan xwedî derketine. Ew kesên ku li Cihûyan zilm kirine, ceza dane wan. Tiştên wisa jî çêbûne.

**Hûn ji xwe re dikarin bêjin 'ez Kurdistanî me?'**

Ez Cihûyekî Îsraîlî me. Bavê min û malbata min ji Kurdistanê hatine. Ez xwediyê malbatek Kurdistanî me.

## "Malbata min jî ji Kurdistanê hatibû"

**Têkiliya we û Cihûyên Kurdistanê û Kurdan çawa dest pêkir?**

Gava min li zanîngehê dixwend, divê min tezek amadebikira. Mamosteyê min mijara aboriyê pêşniyar kiribû. Lê min dîroka Cihûyên Kurdistanê amade kir. Ji ber ku malbata min jî ji Kurdistanê hatibû. Min bi gelek kesan re hevpeyvîn çêkir û guhdarî wan kir. Pişt re ev bû bingeha pirtûka min a bi navê "Cihûyên Kurdistanê."

**Komeleya we ya bi navê 'Dostaniya Îsraîl-Kurd' di kîjan salê de hat damezrandin?**

Komel di sala 1993'an de ji aliyê çend kesan ve hat damezirandin. Beriya damezrandina komelê, me gelek çalakî lidarxistin. Me derbarê doza Kurdan de raya giştî agahdar kir û hê jî dikin.

**Hûn tekoşîna gelê Kurd a li hemberî dewletên dagirker çawa dibînin?**

Rewşa Herêma Kurdistanê gelek baş e. Li Tirkiyê jî gelek guhertin çêdibin. Ji bo wî Kurd gelek bi hevî ne. Lê fikrê minê şexsî ew e ku ez rewşa giştî ne baş dibînim. Kurd di bin gelek zehmetiyan de dijîn. Dewleta Tirk siyasete xwe naguherîne. Eger Kurd zorê li Tirkiyê nekin, dewlet nahê guhertin. Bi van polîtîkayan ez bawer nakim ku tiştek nû çêbe.

**Amerîka û Yekîtîya Ewrûpayê di vir de rolek çawa dilîzin?**

Amerîka naxwaze Tirkiye sîyaseta xwe biguherîne. Tiştek wiha ne li gor berjewendiyê Amerîka û hêzên din in. Pêdiviya wan bi Tirkiyê heye.

**Gelo Îsraîl dikare kîjan rolê bilîze?**

Pêwendiyên Îsraîl û Tirkiyê dema îro gelek hesas in. Di van rojan de tiştên baş çênabin.

Li gor îddiayên Tirkiyê, Îsraîl piştgiriyê dide PKK'ê...

Tiştek wisa tune. (Bi ken) Belkî li cem Recep Tayyip Erdoğan agahî hene. Îro tiştek wisa li derveyî aqilan e.

**Lê li aliyê din rêberê PKK'ê Murat Karayilan demek berê hevpeyvînek da televîzoyonek Îsraîlê. Karayilan gotibû ku Îsraîl çekên kîmyayî dide Tirkiyê û ew jî li dijî me bi kar tîne. Hûn van îddiayan çawa dinirxînin?**

Îhtimalek heye ku ev axaftina birêz Murat Karayilan siyasî be. Karayilan belkî dixwaze hinek mesajan bide hinek deran, mînak raya giştî ya Ereban.

**Lê di raya giştî de baweriyeke wisa heye ku Îsraîl çekên leşkerî difiroşe Tirkiyê...**

Her çiqas îro tekiliyên Îsraîl û Tirkiyê hinek ne baş bin jî, lê 30 sal in ku ev herdu dewlet di pêwendiyê de ne. Di rojekî de jî xirab nabe. Di van pêwendiyan de firotin û girtina çekan jî heye. Lê îro îmkan heye ku ev pêwendiyên Îsraîlê yên bi Tirkiyê re bên guhertin. Dibe ku têkiliyên bi Kurdan re xurt bibin. Lê ev çawa û bi çi rengî dibe, nizanim.

## "Di meseleya girtina Ocalan de gelek tiştên veşartî hene"

**Kurd ji ber girtina Abdullah Ocalan li hemberê Îsraîlê bi hêrs in.**

Ez ne nûnerê Îsraîlê me. Ez wek mirovek dixwazim di navbere Kurd, Cihû û Îsraîlê de tekiliyek baş û xurt çêbe. Naxwazim di navbera Kurd û Cihûyan de pirskgirêk hebin. Ez xwediyê mîsyoneke wiha me. Di meseleya girtina Ocalan de gelek tiştên veşartî hene. Navê Amerîka û hêzên din tên gotin. Em vîya baş nizanin.

**Li gor we rola Îsraîlê heye yan na?**

Ez nizanim. Ji bo wî tiştek nikarim bêjim.

**Di pirtûka nivîskar Gordon Thomas a bi navê 'Dîroka MOSSAD a veşartî/Casûsê Gîdeonê' de hatiye nivîsandin ku di girtina Ocalan de, vê rêxistinê rol lîstiye...**

Erê min jî ew pirtûka wî nivîskarî xwend. Lê ev çîrok e. Em nizanin rast e yan na. Ji bo wî jî mirov nikare tiştek zelal bêje.

**Hûn ji bo Kurdên diyasporayê çi dibêjin?**

Bila alîkariya hevdû bikin û li çand û zimanê xwe xwedî derkevin. Tekiliyên xwe jî bi hev re xurt bikin. Bila alîkariyê bidin tekoşîna netewî ya li Kurdistanê.

*Hevpeyvîn: Ali Guler*

**Bîografî**



Ew di sala 1958'an de li Îsraîlê hatîye dinyayê. Li ser aboriyê xwendina xwe qedandiye û doktora kiriye. Bi salan e li ser Cihûyên Kurdistanê lêkolînan dike. Pirtûkek bi navê "Cihûyên Kurdistanê" jî nivîsandiye.

Dr. Zaken di sala 1993'an de komaleya bi navê "Dostanîya Îsraîl-Kurd" ava kiriye û niha jî serokê vê komelê ye.

## Piştîwan dixwaze bi navekî Kurd tevlî pêşangehên navnetewî bibe:

# Ciwanekî Silêmaniyê firokeyek çêkir

**Xortê Kurd bi destê xwe firokeyek çêkir û dixwaze di demeke kurt de wê bifirîne asiman. Piştî vê ezmûnê ew dixwaze ku di beşa çêkirina firokeyên bê pîlot de kar bike.**



**Piştîwan dizayna firokeyê bixwe çêkiriye; wê navekî kurdî bidê û heta nefirîne naxwaze nîşanê kesî bide**

**Silêmanî (Rûdaw) -** Çêkirina firokeyê xewna Piştîwan bû, ew niha nêzîke firokeyeke rast çêdike û dibêje: "Di qonaxa navendî de, min bi tepedorê firokeyek çêkir, ew ji bo pêngavên mezintir tecrubeyeke baş bû."

Endezyar Piştîwan Heme Elî Mihemed ku xwe wek Piştîwan Qeredaxî dide naskirin, di sala 1985'an de li Silêmaniyê jidayik bûye û Kolêja Endezyarî li Zanîngeha Silêmaniyê xwandiye. Îro Piştîwan li Beşê Dîzaynê yê projên Parêzgeha Silêmaniyê karmendê Dîzayner e.

Firokeya ku Piştîwan çêkiriye, dîzayna wî bi xwe ye: "Ez yekem Kurd im ku dîzayna firokeke sivik danîye." Firokeya Piştîwan dikare ji 200 heta 300 kîloyan hilgire. Navborî niha naxwaze firokeya xwe pêşanî kesî bide heta dest bi firînê bike. Li gor wî, di demeke kurt de wê bifire asiman. Piştîwan ku piştî Nerîman dibe duyem ciwanê Kurd firokeyekê çêdike, wiha axifî: "Ev bû şeş sal bi awayekî ciddî di internêtê de dixwînim, ev du sal in min dest bi çêkirina vê firokê kiriye. Karê xilaskirina firokê bi şêweyê yasayî û hunerî gihiştiye nêzîka ji sedî 90, di demeke kurt de bi awayekî fermî û agahdariya desthilata firokevanî ya sivîl a Îraqê wê difirînim."

Piştîwan dibêje gelek kesan alîkariya wî ya darayî û manewî kirin: "Hemahengî di navbera min û Hikûmeta Herêma Kurdistanê de hebû, lê heta niha bi awayekî cidî ligel projê min tev negeriyane. Hevkarî ne li gor ku dihat xwestin bû, lê bawer dikim di dahatû de wê baştir alîkariya min bikin."

Derbarê taybetmendiya firokeya wî ku hê xilas nebûye û nefiriyaye, navborî got: "Ev firoke bi kelûpelên li berdest û navxweyî hatiye çêkirin, li gor firokên normal, sivik e tevî ku mezinahiya wê wek a firokeyên din e." Hê ti navek nedîtiye li firokeya xwe bike, her çiqasî bi xwe nizane firokê bifirîne, lê Piştîwan dibêje di demeke kurt de wê bifire asiman.

Piştî çêkirin û firandina wê ji bo asiman, Piştîwan dixwaze firokeya xwe bi alîkariya desthilata firokevanî ya sivîl a Îraqî bibe pêşangehên navetewî da bi navekî Kurdî û dîzayneke Kurdî bi şirketên mezin ên çêkirina firokeyan bide nasandin: "Hewl didim bi rêya desthilata firokevanî ya sivîl a Îraqî bi awayekî fermî tevlî pêşangehên navnetewî bibe, navekî Kurdî li firokeya xwe bikim ji bo ku bê zanîn ku Kurdekî dîzayna firokeyeke sivik daniye."

Navborî amaje dide ku çendîn ciwanên Kurd li Duhok, Hewlêr û Silêmaniyê bi wî re têkilî danîne da di vî warî de kar bikin. Piştîwan dixwaze di saziyeke fêrkirinê de kar bike: "Dixwazim bi rêya saziyeke fêrkirinê tecrubeya xwe bigihînim ciwanan." Ji bo îhtîmala ku di dahatû de şirketek an kesekî biyanî bêje ev dîzayn a me ye û hatiye dizîn, Piştîwan got: "Ez ê bi belge bersiva wan didim." Piştîwan şîretan li ciwanên Kurd dike û dibêje: "Dest bi kar bikin û dest ji gilîkirinê berdin. Ger em xwediyê proje û dahênanê bin, hikûmet û karbidestên vî welatî wê alîkariya me bikin." Piştîwan dixwaze piştî xilaskirina firokeya xwe, di warê firokeya bê firokevan de bixebite: "Piştî serkeftina vê tecrubeyê, dixwazim firokeyeke bê firokevan çê bikim."

## Rêveberê Giştî yê Şirketa DNO piştî lihevhatina li Îraqê:

# Rêya şandina petrola Kurdistanê xweş dibe

**Rûdaw –** Rêveberê Giştî yê Şirketa DNO ya Norwêcî Helge Eide ragehand ku vebûna pêvajoya siyasî ya Îraqê û çareserbûna krîza pêkanîna hikûmetê, rê li ber şandina derve ya petrola Herêma Kurdistanê xweş dike.

Di hevpeyvînekê ligel malpera Bloomberg a Amerîkî ya taybet bi warê aborî de, Rêveberê Giştî yê Şirketa DNO Helge Eide got: "Pêkanîna hikûmetê, ji ku ev pêvajo berbi pêşve here, pêngaveke girîng e."

Eide wiha axifî: "Ger bikarin hikûmeteke çalak bînin ser desthilatê, bawer dikim ku wê ev hikûmet guh bide pirsgirêkên tevahiya aliyan, nemaze Kurdan. Ew dizanin ku di derbarê şandina derve ya petrolê de çi helwêsteka Kurdan heye."

Herwiha Eide ragehand ku gotûbêjên navbera Hikûmeta Herêma Kurdistanê û karbidestên hikûmeta federe bingeheke ji bo destpêkirina prosesa şandina derve ya petrolê di demeke herî kurt de: "Em dikarin wiha bêjin ku gotûbêj li ser vê mijarê hatiye kirin û dibe li ser tiştekî jî rêketibin, lê heta hikûmetek nebe ev nayê pêkanîn."




**Rêveberê Giştî yê şîrketa neftê ya norwecî DNO, Helge Eide**

Şirketa DNO li Herêma Kurdistanê ji sala 2007'an ve karê berhemanîna petrolê dike û di Hezîrana 2009'an de bi razîbûna Bexda dest bi şandina derve ya petrolê kir, lê di Îlona heman salê de ev prose ji ber pirsgirêkên navbera Hewlêr û Bexda de, hat sekinandin. Eide diyar dike ku şirketê di vê demê de karîbû rojane 45 hezar bermîlên petrolê bişîne boriyên rawestgeha Ceyhan a Tirkiyê.

Hefteya borî, piştî krîzeke dirêj ku nêzîka 8 mehan dirêj kir, aliyên siyasî yên Îraqê derbarê pêkanîna hikûmeta nû û dabeşkirina postan di navbera listên serekî yên serkeftî di hilbijartinan de, gihiştin rêketinekê û roja 11'ê Mijdarê ji aliyê parlamento ve serokkomarê Îraqê û serokê parlamento hatin hilbijartin. Tê çaverêkirin jî yek ji karên serekî yên hikûmeta nû çareserkirina nakokiyên taybet bi mijara petrolê di navbera Bexda û Hewlêrê de be.

# Dîyarbekir de parkê bênameyî




**Dîyarbekir (Rûdaw) -** Dîyarbekir de çendî parkî di serran ra vêşêr wexto ke bêname yê. Meclisê beledîyeya Peyasî (Kayapınar) roja 07.05.2010 de bi numre 64 qerar girewtbi ke nameyê panc parkan "Berfîn", "Nefel", "Daraşîn", "Beybun" û "Gulîstan" bo. Labelê wîlayetê Dîyarbekirî zî vera naye de roja 10.06.2008 de bi numre 7194 qerar girewt ke nê nameyan ra tena "Gülistan" bimano. Her çar nameyê bînî bi sedemê ke "nameyê cîyaker" ê ameyê qedexe kerdiş.

A roje ra nat, nê parkî bêname yê. Dê hela ma biewnîn hetanî key nê parkî bêname manenê.

# Teberik




Mekan û atmosferê hîkayanê Alî Aydin Çîçekî dew a; cuya dewe ra, bawerîya dewijan ra fotografê ke xorînîya zerrîya merdimî de jan kenê, formê hîkaye de pêşkêş bîyê.

"Teberik" nameyê kitabê hîkayan yê Alî Aydin Çîçekî yo. No kitabê ey o yewin o, kirmanckî de zî kitabê hîkayan yê desin o.

Kitab de yewendes hîkayeyî estê: Teberik, Gijgêleke, Xêx, Xortê Dewe, Mîyazê Xizirî, Xatir, Toraqo Solin, Mar, Şilane û Gulsosine, Berîvane, Gule.

Alî Aydin Çîçek 1984 de Gimgim de ameyo dinya. Hetanî lîse Gimgim de wendo. Unîversîte 2008 ra nat Îstanbul de ciwîyeno. Gama ke dezgeyê UNESCOyî derheqê rewşa vindîbîyayîşê lehçeya zazakî de rapor vila keno, o zî keweno binê tesîrê nê raporî, Enstîtuya Kurdî ya Îstanbulî û Weşanxaneyê Vateyî de verî derse gêno, dima o bi xo dersa ziwanî dano.

Alî Aydin Çîçekî kitabê xo cinîyanê kurdan rê kerdo dîyarî. Kitabê ey bi na cumle dest pêkeno: "Seba cinîyanê kurdan ke vera şer û tadayî vindenê û ziwanê xo musnenê domananê xo."

Mekan û atmosferê hîkayanê Alî Aydin Çîçekî dew a; cuya dewe ra, bawerîya dewijan ra fotografê ke xorînîya zerrîya merdimî de jan kenê, formê hîkaye de pêşkêş bîyê. Alî Aydin Çîçek hîkaya bi sernameyê "Teberik"î de merdimêkê kokimî ke cîgerê xo, domanê xo şer de kerdê vindî, wina nîşanê ma dano:

"Tenik-tenik va ameyêne. Vengê vayî de vengê tifingan, vengê şerî… (…)

Merdimê kokimî sereyê xo ver bi asmênî kerd berz û qayîtê aşme kerd. Roştîya aşme hesiranê çimanê ey de bereqîyayêne. Kokimî xo bi xo bêveng va:

'Ax dinya! Werrekna ez zî pepûg bîyêne û dima vayî, dima şilîye winî şew û roje mi janê xo to rê biwendêne.'"

Alî Aydin Çîçek, bi nê hîkayanê xo nîşan dano ke o wayîrê yew damara edebî yo. Merdim tavilî hîs keno ke ey bi hewes û zerrî ra hîkayeyê xo nuştê. Û ziwanê baw û kalanê xo ra hes keno. Bi eşq ziwanî ser o vindeno. Wina aseno ke ma do ey ra hîna zaf eseranê neweyan biwanin.

Tayê problemê xo yê şenikî estbê zî bi hawayêko umûmî ziwanê hîkayanê ey ziwanêko pank û sade yo, hol fehm beno. Tayê hîkayan de qiseykerdişê ey tahmê şîîre dano. Xora, ganî ziwanê hîkayan bineyke nêzdîyê ziwanê şîîre bo. Labelê Alî Aydin şêno ziwanê xo bineyna bi dîqet bişuxulno.

Nê teswîran de, mîyanê her di cumleyanê verênan û her di îbareyanê cumleya peyêne de hetê qiseykerdişî yan zî neqlkerdişê bîyayîşan ra problemê zemanî esto; kronolojîyê qiseykerdişî pênêgêno.

Ez hêvîdar a ke Alî Aydin Çîçek hîna zaf eseranê erjayan pêşkêşê wendoxanê kirmanckî bikero û xortê ma yê sey ey bibê zafî, edebîyatê ma bi destê înan gamêka hîna pête aver şiro.

Kunyeya kitabî: Alî Aydin Çîçek, Teberik, Weşanxaneyê Vateyî, Îstanbul, 2010, 95 rîpelî

Adresa waştişî: Vate Yayınları, Katip Mustafa Çelebi Mahallesi, Tel Sok. No: 18 Kat: 3, Beyoğlu – İstanbul, Tel: 0 212 244 94 14, e-post: wesanxaneyevateyi@hotmail.com

Dîyarbekir de: Ekinciler Cad., Nurlar Ap., Kat 3, Ofîs – Dîyarbekir

**Murad Canşad**

## Ware

Emser hamnan zaf germ bi. Adir varayêne! Mirmêle (leylan), ereq, bêhalîye… Ne hewnê şewe ne xebata roje.

Germê hamnanî rê çare çi yo? Merdim yan xo erzeno bi bextê dengizan yan zî bextê wareyan.

Eke îmkanê mi bibîyêne mi xo eştêne bi bextê wareyan. Serre bi serre ez hîna zîyadêr qedr û qîymetê wareyan zana.

Domanîya mi yena mi vîr.

Dorûverê ma de heme keyeyî hamnan ra hamnan şîyêne ware. Yê her kesî cayê xo bellî bî. Di-hîrê rojan ra ver şîyêne holika xo viraştêne, dima mal-dewar û nêmeyê keyeyî girewtêne berdêne. Ware zaf dûrî nêbî. Nêzdîyê dewe de cayêko berz de bî. Beno ke saetêk yan saetêk ra zîyadêr.

Ware seba di çîyan rind bî. Hamnanî dewe zaf germ a, germ seba heywanan rind nîyo. Heto bîn ra wextê hêgayan o, xeleyî resenê. Mal-dewar û hêgayî têmîyan de nêbenê.

Roja verêne seba ma domanan roşan bî! Ma bi keyf a şîyêne. Dihîrê rojan ra pey hewesê ma vîyartêne. Çimê ma dewe de bî. Dewe de bostan esto, meyweyêrî estê. Kam goş keweno orrayîşê mangaya bore ra!

Cinî û ma domanî ware de mal-dewarî ver de bîy. Camêrdî dewe de hêgayan ver de bîy, vaşê xotare ver de bîy, bostanî ver de bîy… Înan destê wareyî ra nîyadayêne. Nan ware de pewjiyayêne. Ma şodir bi şodir rew ra nan û pêwerê înan girewtênê berdêne. Şan bi şan zî dewe ra tarûtur, zerzewat, meywe girewtênê ardêne. No karê ma domanan bî. Ma way û birayan nê karî ser o dayênê pêro, çare ke nêmendêne, ma xo mîyan de dore ronayêne. Her kes pabeyê roja xo bî.

Çimê ma domanan dewe de bî, yê camêrdan ware de bî. Xanim û waştî ware de yê! Ma hewnê xo de bostan dîyêne, înan …

Nê semedî ra wareyî ser o fekê camêrdan ra xeylê kilamî ameyê vatene:

"Heq adirê kafirsendî wedaro / Gule şîya, şîya ware…"

Yewna kilama populere esta:

"Ax ti şîya ware, leminê, çiqa serd o…"

Hem wextê wareyan bo, yanî hem hamnan bo hem zî serd bo! Mêrikî derdê xo eşkera nêvato, serd mana (behane) kerdo! Camêrdan xo nêgirewtêne, çend rojan ra reyêk vejîyayêne ameyêne ware.

Hetê ma de wextê wareyan zêde derg nêbî. Beno ke hîrê mengî temam nêbîyênê, ma ancî xirê dewe bîyênê. O wext hewa hebêk bîyêne honik, karûbarê hêgayan zî hema-hema qedêyayêne.

Mi behsê mintiqaya ma kerd la mîyanê heme kirmancan (zazayan) de meqsed û fonksîyonê wareyî eynî yo. Ware dewe ra cîya nîyo, parçeyêkê dewe yo. Keso ke şî ware, eleqeyê xo dewe ra nêbirîyeno.

Ez wazena tîya persêk pers bikera.

Kirmancî (zazayî) vanê "Ma şonê ware." Kirdasî (kurmancî) vanê "Em diçin zozanan." Yanî ma şonê wareyan.

Derê, yê kirmancan qey "ware" yo, yê kirdasan qey "wareyan" o?

## Nufûsê dinya nêzdîyê 7 mîlyaran o



Goreyê reqemanê Fonê Nufûsî yê Yewîyîya Neteweyan (UNFPA) nufûsê dinya nika 6 mîlyarî û 908 mîlyonî û 7 hezarî kes o. Goreyê texmînanê UNFPA emser, yanî 2010 de, nisbet bi serra parî nufûsê dinya 79 mîlyon kes zêdîyayo. Texmîn beno ke serra 2050î de nufûsê dinya 9 mîlyarî ra bivîyaro.

Zêdîyayîşê nufûsî de Afrîka tewr sere de ya, Ewropa zî tewr peynî de ya. Pisporî texmîn kenê ke mîyanê 40 serranê vernîya ma de welatê ke tewr zêde nufûsê înan kêmî bibo Japonya, Rusya, Almanya û Îtalya yê.

Nika welato ke nufûsê ey tewr zêde yo, Çîn o. Çîn de 1 mîlyar û 354 mîlyonî kes ciwîyêno.

# Şeytan navbijêvanê (navçîkar) wan be!



Hekîm Kakeweys

11'ê Mijdara îsal jî bû hejmareke din di dîroka reş û tarî ya gelê Kurd de. 11'ê Mijdara îsal jî bi dîtina min wek 6'î Adara 1975'an a Cezayir û 24'ê Tîrmeha 1923 a Lozanê, birîneke din xist laşê vî gelê sitembar. Cudahiya di navbera 11'ê Mijdarê û dîrokên din de ew e ku di herdu yên din de, neyarên gelê Kurd serdest bûn û bêyî agahdariya Kurdan mora xwe li nav û welatê me xistin û em dan ber nefreta dîrokê, lê vê carê Kurd bi xwe beşdar, endezyar bûn û tevgereke xwekuştinê kirin.

***Tiştê ku Kurdan di vê rojê de ji bo Îraqa Malikî kir demekê rast dibû eger:***

- *Malikî û partiya wî tenê pêngavek ji bo çareserkirina pirsgirêka Kerkûkê bidaya û ji Baasê zêdetir ew Ereb nekira.*
- *Malikî û partiya wî bi heman şêweyê ku Ereb li daireyên Kerkûkê bicih kirine, nîvê wan jî Kurd bicih kiriban bi taybetî di warê petrol û perwerde yê de. Em hemû jî dizanin kesên li Kerkûkê dersan didin zarokên Kurdan, piraniya wn li ser qeyda Hewlêr an Silêmaniyê ne û bi zorê birêve diçin.*
- *Kurd li Celewla, Xurmatû û navçeyên derdora wan neçarî koçkirinê nebûna û Ereban cihên wan negirta.*
- *Navçeyên ku pirsgirêk li ser wan heye, leşker li wan bicih nebûna û çekdarên Kurd ji wan venekişiyana û wek ku yekalî nebûne, di warê leşkerî de jî ne ser bi Bexda bûna.*
- *Usame Nucêfî Kurd li Mûsilê nehiştin û madem di erkê xwe yê şoven de serkeftî bû, bona çi hat bilindkirin ku bibe serokê parlamentoyê? Vêca çaverê be û bibîne di vê pileya bilind de wê çi bîne serê Kurdan!*

Pêwîst jî nake behsa 19 xalên Kurdan bikin ku ew jî hejmareke dine û kes berbi wan neçû, qaşo hikûmeta ku Malikî dirust dike pişt re wê li ser wan bixebite. Wek tê zanîn jî yek aliyê Îraqî ji bo van 19 xalên Kurdan îmzeya xwe navêtiye ser kaxezê! Êdî ev karê xwekuştinê yê Kurdan bona çi bû?! Tenê da ku bêjin Kurd ne beşek ji pirsgirêkê, lê beşek ji çareseriyê ne. Kurdan ne tenê piştevaniya Malikî kirin û Îraq ji kirîz, metirsî û parçebûnê derbas kir -ku di berjewendiya gelê Kurd de bûn- lê wan herwiha dilê dagîrkerên din ên Kurdistanê jî xweş kirin û ji pirsgirêk, serêşa mezheban rehet kirin. Êdî bona Kurdan çi hat guhertin!?

Ji bo gelê Kurd ewqas bese ku kêfxweşiya Tirkiyê û Îranê bibîne û ji bo van bûyerên 11'ê Mijdarê reşbîn bin, êdî diyar e encama van guherînan malwêraniya gelê Kurd bi xwe ye. Dema min li ser ekrana televizyonan sîmaya serkirdeyên xwe didît, ew Kurdên eyaleta Mûsilê dihatin bîra min ku Îraq ava kirin. Herwiha, Seîd Qezaz û wezîrên paye bilind ên heyama paşatiyê ya Îraqê hatin bîra min ku hewldanên bê hempa didan ji bo parastina yekîtiya xaka Îraqê û çarenûsa wan jî ew bû destê xwe û gelê xwe ji binê hebanê derkeve! Mixabin! heta niha em nizanin em çi dixwazin. Em dixwazin neteweya me serfiraz be yan kesayetiyeke Kurd pileyeke bilind di desthilata Bexda de werbigre?

Heyf û mixabin! Ez li mala xwe di şînê de me û xelkê di ekranan de dibînim ku aheng û govendan sazdikin û pîrozbahiya hevdu dikin. Serkomar Kurde û sund xwar dilsoz û wefadarê yekîtiya xaka Îraqê be û ez jî sund dixwim wefadarê yekîtiya xaka Kurdistanê bim! Ew rêzdarên ku li Bexda nûneratiya Kurdan dikin, li wir in ji ber rojekê ji rojan sund bi xaka Kurdistanê û xwîna şehîdan dixwarin. Tevgerên bi vî şêweyî ne karê Kurdan ê îro ye. Kurd di warê netewî de nehatine perwerdekirin û partayetî tenê ji bo wêya bûye, berevajî armancên netewî tevbigere û xwe bi xwe bikuje.

Dirustbûn û bihêzbûna Hikûmeta Îraqê çi sûdê digihîne Kurdan ji bilî misogerkirina hêla bazirganî navbera Kurdistan û Tirkiyê ku herdem jehr jê tê Kurdistanê û petrol tê de diçe.Sed mixabin ji bo 6'ê Adarê û 24'ê Tîrmeha Lozanê û 24'ê Tîrmeha parlamentoyê û madeya 140'ê û hinek hejmarên nefretî yên din ku taybet in bi malwêraniya gelê Kurd, lê bila kesên ku wek min difkirin jî bêhêvî nebin: Birîna navbera Şîie û Suniyên Ereb ji wê yekê kûrtire ku serkirdeyên Kurd bikarin ji bîra wan bibin û derman bikin. Pêngava yekem avêtin, lê bawer nakim binpêkirina hezar salan a Şîieyan bi hêsanî bê rakirin û darûdestên Nucêfî jî dest ji van xêrûbêrên hezar salan yên xwe berdin. Êdî Kurd bila dest ji mafên xwe berdin. Ger niha Kurd dest ji Kerkûkê jî berdin, wek ku hinek nivîskarên bêxem pêşniyar dikin, Şîie û Sunî wê li ser şer bikin! Hêvîdar im serkirdeyên siyasî yên Kurd ji me re ron bikin ka bona çi ev rol meşandin û rê li ber hilweşandina Îraqê girtin.

Xwedayo şeytan bike navbijêvanê (navçîkar) ê wan!

# Pîroz be Îraq!



David Romano

Ger Îraq vegere serdemê dîktatorî û şovenîstî ya Erebî û binpêkirina Kurdistanê, divê em hemû piştîvaniya cudabûna gelê Kurd bikin ji bo bidestxistina serxwebûnê. Ti pêkhateyeke dewleta Îraqê ya pîroz tune, tenê wê demê pêwîst dike bimîne gava di dabînkirina pêdivî û hêviyên gelên xwe de, serkeftî be. Heta radeya ku Îraqa nû rêz li otonomiya Kurdan bigre û hewl bide destûrê bimeşîne, êdî hewldana gelê Kurd ji bo bidestxistina serxwebûneke tevahî karekî şaş e.

Tevî ku ez xwesteka gelê Kurd a bihêz ji bo dirustkirina dewleteke Kurdî fam dikim 'ji ber ez jî xelkê Herêma Cubic li Keneda me', divê em bîra wê yekê bibin ji ber çi netew herdem li xaka xwe digerin. Helbet ji bo ku hest bi aramiyê bikin û bibin axayên mala xwe, herwiha ji bo ku bikarin bi awayê çanda xwe bijîn û bi azadî xwendin, ziman û karê xwe bikin. Bi giştî jî serkirdên van neteweyan jî qazanc dikin ku serxwebûna gelê xwe bidestxînin û bi rêya pêşandana hêviyên netewî, nîşana pêdiviya bidestveanîna serxwebûna netewî bilind dikin.

Herêma otonom a Kurdistan a Îraqê, ji mêj ve ev azadî bidest xistiye, ew ê ji ber çi van destkeftên mezin ên ku di rewşên ne çaverêkirî de di salên 1991 û 2003'an, hatin bidestxistin, têxin jêr xeterê? Herwiha mabûna di nav Îraqê de, aramî û ewlekariya Kurdistanê baştir dike. Ligel hebûna hêzên Pêşmerge, Kurdên Îraqê dikarin artêşa nîştimanî ya welatê xwe jî gazî bikin, ger rojekê rastî metirsiyeke derveyî hatin. Kurdistaneke serbixwe ji bo nêzîka 4 milyon Kurdan, qet nikare rûbirû be ligel hêzên mezin ên deverê wek Tirkiye û Îranê, zêdebarî nîv-hêzeke mezin a wek Sûriyê jî.

Tevî hebûna roleke berçav li Bexda, pêwîste Kurdên Îraqê bi şêweyekî baxivin û tevbigerin ku diyar bikin ew beşek in ji welatekî 30 milyon kesî û bi hêviya ku piştrast bin ku careke din Bexda wek dijmin berê xwe nade wan.

Hinek Kurd bi taybetî yên li diaspora, daxwaza Kurdistaneke serbixwe li Başûrê Kurdistanê" dikin ji bo ku rojek bê û ew daxwaza mafên Kurdên Tirkiyê, Îran û Sûriyê bike. Di demekê de dengekî dostane ji bo Kurdan li NY û dezgehên navnetewî yên din de tiştekî başe, lê dewleteke Kurdî ya zeftkir dikare çi ji birayên xwe yên li welatên cînar re bike, ji bilî ku hebûna xwe jî dixe xeterê de? Dengekî bihêz ê Îraqî dibe pir baştir be ji van sazî û dezgehan. Herwiha Pan-Kurdîzim jî divê bi baldarî hêviyên xwe pêşan bidin. Ji bilî vê jî hewldan ji bo karekî metirsîdar e wek yekgirtina tevahiya Kurdistanê, tiştekî neguncav û dînane yê bi vî rengî ye û ger dirust jî bû, tenê dibe sedemê derketina nakokiyên navxweyî: gelo kesên bijarte li wan parçeyên Kurdistanê ku çand, dîrok, tecrubeya siyasî, zarav û heta nivîsa wan jî cudaye, cihê wan di yekîtiyeke siyasî de dibe? Şerê navxweyî 1994-1998 li Herêma Kurdistanê ne tişteke li gor şerê navxwe yê Kurdistaneke hevgirtî.

Bi rastî baştirîn kar ku Kurdên Îraqê bikin û alîkar be ji bo wan û Kurdên din li welatên cînar û 'Kurdên beşên din ên Îraqê jî', ewe ku Îraqiyên baş bin di Kurdistaneke otonom de. Dewleteke Îraqî ya serkeftî ya pirnetew, dikare peyama wê yekê jî bilind bike ku neteweperestiya li welatên cînar ên Ereb, Tirk û Îranî, bêyî ti sedemî pirnetewiya xwe kuştine. Ji alîkî din ve cudabûna Kurdistanê ji Îraqê, tenê tirsa welatên cîran dipejirîne. Ew dewlet li dawiyê dibêjin ku incek ji Kurdan re bê dayîna, wê Kurd bikin mîlek. Wê demê prosesa reformê li Tirkiyê radiweste, li Tehran û Şamê jî wê siyaseteke şoven a zêdetir bikar bînin.

Helbet dema serkirdeyên Kurd wek Celal Talabanî xwe bi Îraqê dinasîne, herwiha gava Mesûd Barzanî hewldanên zêde dike ji bo pêkanîna hikûmeteke fereh û dema Wezîrê Derve yê Îraqê, Hoşyar Zêbarî, hewl dide nûneratiya berjewendiyên giştî yên Îraqê bike, nabe bên rexnekirin ku nîştîmanperweriya xwe ya Kurdî jibîr kirine. Ji bilî vê jî divê xelk kêfxweş bin ku siyasetvanên wan ên xwedî ezmûn û tecrûbe têgihiştine ku berjewendiya rasteqîne ya Kurdistanê di vê pêvajoyê de, di çi û ku de ye. Helbet çawa dewleta Îraqê ne pêkhateyeke pîroz e, herwiha nabe dewleta Kurdî jî bibe xwestekeke nîştîmanî. Divê hebûna dewletê ji wê yekê bê mêzekirin ku rêyeke dijware berbi dawîhatinê: Bo çi bacê didî û xwe dixî metirsiyê, ger pêwîst neke? Helbet tevî ku karekî pir girane jî, lê pêwîst e Kurd hêviya dahatûyeke xweş ji Îraqa nû ya ku wan jî lixwe digre, bikin.

Di lîgaya lîstikên Asyayê (Asiad 2010) de

# Belemvanekî Rojhilatê Kurdistanê bû yekem




Roja îna borî werzişvanekî Rojhilatê Kurdistanê di pêşbirkeke belemvaniyê de li Çînê yekemîn derket û medaliya zêrîn stand.

Di çarçoveya lîstikên Asyayê (Asiad 2010) de ku li Çînê tên lidarxistin, roja 19'ê Mijdara 2010'an li bajarê Guangzhou pêşbirka belemvaniya tekkesî (Rowing World Championships 2010) hat sazkirin û tê de werzişvanê ji Rojhilatê Kurdistanê 'Mihsin Şadî' yekemîn derket û di encamê de medaliyeya zêrîn bi dest xist.

Mihsin Şadî ku bi xwe ji bajarê Nexedê yê Rojhilatê Kurdistanê ye, di koma yekemîn a pêşbirkê de hevrikiya werzişkarên ji Ozbekistan, Tailand, Koreya Başûr û Hong Kongê kir û rêya pêşbirkê di kêmtirî 7 deqîqeyan de derbas kir û bû yekemîn, li pey wî werzişvanê Japonî duyemîn û yê Ozbekî jî sêyemîn derketin.

Her di heman lîstikê de belevanê xelkê bajarê Mihabadê, Tahir Kebuterî, jî pileyên pêncemîn bi dest xist.

## Şampiyonên bîlardoyê li Amedê hatin cem hev



**Amed (Rûdaw) -** Amed di 23'ê Mijdarê de ji Şampiyoneya Bilardo re malovaniya dîrokî kir. Di çarçova Rojên li Amedê 3 Band Bîlardo ku sê rojan dom kir, lîstikvanên navdar li Amedê civiyan.

Tûrnûvaya bîlardo ji aliyê Komîteya Rêveber a Nûnertiya Bajar a Amedê ya Federasyona Bîlardo ya Tirkiyeyê (TBF), ve tê organîzekirin. Dema me nûce amade dikir, tûrnûva hê destpênekiribû. Li gor agahiya ku Komîteya Rêveber ragihand di roja 1'emîn de li Kolana Alî Emîrî, di roja 2'eyemîn de jî li Salona Bîlardo didome. Tûrnûvaya ku 3 rojan bidome, wê şampîyonê Tirkiyê, Ewrûpa û Cîhanê Adnan Yuksel, Murat Nacî Çoklu, Tayfun Taşdemîr, Ahmet Alp, Can Çapak, Savaş Bulut, Murat Tuzul, Lutfî Berk Çenek, Selîm Ozden, Murat Çelîk, Hakan Încekara û Şampîyonê Bîlardoya Artistîk a Cîhanê ku ji Amedê ye Haci Arap Yaman jî başdarî turnûvayê dibe. Ji bo şopandina tûrnûvayê 40 sporvan ji beşdar bibin. Her wiha wê Şampîyona Jinan a Tirkiye, Ewropayê û 3'emîn Cîhanê Gulşen Degener jî bişopînin. Turnuva wê li gorî rêgez û pîvanên Federasyona Bîlardo ya Cîhanê pêk bê. Lîstikvan wê îşlikên reş, şalên sipî, papyon û êlekan li xwe bikin. Musabayaka tûrnûva wê li gorî hêjmara 40'an pêk bê. Ev hêjmar wê ji bo şampîyonî û maçên 3'emîn jî li gor hêjmara 50'î û ser 50 pêk bê.

Nûnerê Bajar ê Amedê yê TBF'ê Îhsan Delîbaş, diyar kir ku bi taybet ji bo tûrnûvayê afîş çap kirine û pereyên ku ji afîşan bi dest bixin wê wekî xelatê bidin lîstikvanê serkeftî.




Diyarbakirspor piştî 247 rojan biserket!

# Diyarbakirspor lîderê lîgê têkbir

Diyarbakirspor di hefteya 13.de dikare b§ehna xwe bide. Antrenorê tîmê Engin Korukir ji Amediyan piştgirî xwest û got ligel gelek kêmasî û pirsgirêkan ew ê di lîgê de bimînin.

Di Lîga Bank Asya da roja yekşema borî tîma lîder Denizlispor û tîma herî dawî Diyarbakirspor hatin himberê hevdu. Maça ku li Denizliyê hat lîstin ji bo lîderê lîgê bû têkçûna yekem û jî bo Diyarbakirsporê jî bû serkeftina yekem.

Diyarbakirspor piştî 3 wekhevî û 9 têkçûnan, di hefteya 13.de bi lîderê Lîga Bank Asya Denizlisporê re leyîst. Maç li saheya Denizlispora ku heta niha qet têkneçûye, hat leyîstin û tenê golek hat avêtin. Lîstikvanê Diyarbakirsporê Halil Zeybek di deqeya 44. de gol avêt û tîma xwe ji têkoşîneke zehmet bi serkeftî derxist. Bi vê maçê Diyarbakirspor di vê sezonê de cara yekem biserket û Denizlispor jî cara yekem binket.

Piştî vê maçê Diyarbakirspor pûanên xwe kir 7 û bi averajê kete rêza 16. Niha li dû Diyarbakirsporê tenê tevî 7 pûanan Giresunspor heye. Denizlispor jî dîsa lîder e û 25 pûanên wê hene.

**Her du tîm heta niha 15 maç leyîstine**

Diyarbakirspor di sezona 2003-2004'an de di Lîga Super de li pey hev 14 maç bê têkçûn, biserketibû û vê rêza serkeftinê bi maça Denizlisporê destpêkiribû ku Diyarbakırspor li deplasmanê 2-1 biserketibû. Heta niha Diyarbakirspor li bajarê Denizliyê 7 maç leyîstiye û 1 serkeftin, 2 wekhevî û 4 têkçûn ditiye. 3 gol avêtiye û 7 jî xwariye.

Ev herdu tîm heta niha bihev re 15 maç leyîstine. Diyarbakırspor ji van maçan 3 serkeftin û 4 jî wekhevî standiye, 8 jî têkçûye. 9 gol avêtiye qelaya Denizlisporê û ji lîstikvanên vê tîmê jî di qeleya xwe de 16 gol dîtiye.

**"Em ê di lîgê de bimînin"**

Antrenorê Diyarbakirsporê yê nû Engin Korukir du herdu maçên pêşî de li himberê Giresunspor û Karşiyakayê bisernekêt û di maça sêyem de li himberê Denizlisporê biserket. Korukir pistî maça Karşiyakayê ku Diyarbakirspor 0-1 wenda kir, ragihand ku ew ê di lîgê de bimînin û danekevin lîgeke jêr.

Korukir got ew ji lîstika tîmê kêfxweş ê, lê di navbera bireverbiriyê û alîgiran da pirsgirêk hene. Korukir wiha axifî: "Ez nerazîbûniya alîgiran fahm dikim, lê gazincên ku ji lîstikvanan tên kirin, ne rast in. Lîstikvanên me ji serê sezonê heta îro pereyê xwe nestendine lê hertim tevlî antrenmana dibin; ev tiştek gelek girîng e û divê em rûmetê nîşanê wan bidin." Korukir bang li Amediyan kir ku xwedî li tîmê derkevin û wiha got: "Ev bû du hefte ez li Amedê me. Weke ez dibînim di navbera alîgiran û birêvebiriyê de pirsgirêk hene. Di klûbê de bê baweriyekî kûr heye. Pirsgirêka herî mezin jî rewşa aborî ye. Lê ev ne karên min in, karê min ew e ku bi van lîstikvanan ez tîmê di lîgêde bihêlim. Baweriya min jî vê tîmê heye. Divê em di rewşeke wisa de êrîşê wan nekin, alîkarî bidin wan."


Salar Kamangar

# YouTube dibe Kurd Tube

## Salar Kamangar ê Kurd êdî rêvebirê portala navdar YouTube ye.

Piştî Omid Kordestanî yê ku yek ji managerê makîneya lêgerînê Google e, niha jî stêrka Kurdekî din ji Rojhilatê Kurdistanê di qada teknolojiyê de geş dibe. Salar Kamangar ê 33 salî, yê ji bajarê Sine li Rojhilatê Kurdistanê, piştî ku damezrênerê YouTube Chad Hurley xwe ji rêveberiya malperê da paş, dibe rêvebirê nû yê mezintirin portala vîdyoyan a cîhanê.

Damezrênerê YouTube Chad Hurley da xuyakirin ku ev 2 sal in wî xwe ji karê rojanê yê rêveberiya YouTube vekişandiye û karê wî Salar Kamangar ê ku heta niha berpirsekî bilind ê Google ye (Vice President of web applications), dimeşîne.

Google di Mijdara 2006'an de YouTube bi 1,6 milyar Dolar kirîbû, lê portala ku rojane 2 milyar vîdyoyên wê tên temaşekirin hîn jî qezancê nake. Ji ber wê yekê heviyên mezin bi Salar Kamangar vê tên giredan ku ew YouTube derbasî qada qezancê bike.

Salar Kamangar di sala 1977'an de li Tehrana paytexta Îranê ji dayîk bûye û zanîngeha Stanforde qedandiye.

# "Ezîz Weysî 10 caran ji Tatlises mezintir e"


Ezîz Weysî

Karzan Heyder

Xwediyê Şirketa Adel Mûtehîde Ruşdî Seîd ragehand ku niyeta wî heye hunermendên cîhanê bîne Kurdistanê: "Hemû hunermend û aktorên cîhanî yeko yeko tînim Kurdistanê. Niha em ligel Sylvester Stalone, Arnold Schwarzeneeger û Angelina Jolie gotûbêjan dikin û herwiha ligel herdu hunermendên navdar ên Misrî Tamir Husnî û Omru Diyab jî gotubêj hene ku wan bînim Kurdistanê. Her kesek here 5 milyon dolaran bide her yekî ji van hunermendan nayên, lê dema ez ji wan re bêjim, qey dikarin neyên?"

Şirketa Adel Mutehîde, li kanala Zagros Tv bi nave `Tatlises bo te ye` bernameyeke xêrxwazî pêşkêş kir, lê Ruşdî red dike ku Îbrahîm Tatlises tevî wê bernameya xêrxwazî bûbe û got: "Gava min Tatlises anî Kurdistanê, xelkê wiha bawer dikir ew karê xêrxwazî dike, dixwazim pir bi awayekî eşkere bêjim ku heta niha Îbrahîm Tatlises 1 dolar jî xerc nekiriye, belgeyên min hene, ez bi xwe qebûl nakim kesekî biyanî were hevkariya xelkê min li Kurdistanê bike, qey em ne mêr in? Îbrahîm tenê rûyekî medyayî bû bo demekê, ew ezîz û hevalê min e û rêz lê digrim, lê ji bo min Ezîz Weysî 10 caran ji Îbrahîm Tatlises mezintir e û bi qîmettir e, ji ber ku xelkê min e."


Îbrahîm Tatlises


Ruşdî Seîd



# Şahjina pêşerojê di bîkînî de: Ev dibe?

Ev jina ciwan ku bi bincilên ciwan û seksy li ser dike dimeşe we nas kir? Ev Kate Middleton a destgirtiya Prens William e. Hîn hefteyek li ser nûçeya ku Prens William xwesteka xwe ya hevjîniyê ji hevala xwe Kate Middleton re ragihand, derbas nebûye, wêneyên nîvtazî malbata qiralên Ingilîstanê kirin heycanê û pirs ew e, ka gelo şahjina pêşerojê dikare xwe nîvtazî pêşkêşî raya giştî bike?

Ev wêneyê Kate Middleton di sala 2002'an de, di dêfîleya li Zanîngeha St. Andrews li Skotland hatiye kişandin. Wê demê Kate Middleton 19 salî bû û nizanîbû ku ew ê rojekê bibe şahjina Ingilîstanê. Eger zanîbûye, belkî poşman bibûye û tevlî dêfîleyê nebûye. Kate û William di dema xwendina li Zanîngeha St. Andrews hevdu nas kirin û ji wê demê ve hevalê hevdu ne û rûpelên rojnameyên magazîn yên Brîtanî û cihanê heftane bi çîrokên xwe tije dikin.

**Çeperast:** 1- Esmer, reş – Vexwarinek şîrîn. 2- Welatek – Li Swîsreyê çemek. 3- Trimbêl, motor. 4- Deng, awaz – Cûreyekî meymûnan. 5- Pevçûn, lihevxistin – Sekinî, rawestîya – Navbera ser û çavê mirov, pêre ye. 6- Xwarina heywanan – Kom, koma pûş – Werîn, ji bîr neke (berepaş). 7- Xwarina hêkên qelandî – Lûle, derbasbû. 8- Eminatî, guhdêrî – Cejn, şahî. 9- Merez, kul, xem (berepaş) – Ap, mam – Berxwarin, xwarina ber eraqê. 10- Li Misrê zanîngehek – Nîşan, keramet, qewimîn.

**Serejêr:** 1- Bajarekî rojavayê Kurdistanê – Ji bo ku, çimkî (berepaş). 2- Firêze, paşmayî, emel – Tevirdan, kolan, tirîyê herî dawîn. 3- Dengê mîh û bizinan – Paytextê başûrê Kurdistanê (berepaş) . 4- Zarok û çêlîkên ber şîr (berepaş) – Navekî jinan. 5- Ji şîr çêdibe (berepaş) – Destnîşana kesê duyem. 6- Kemilî, kemlan – Bide, bide min. 7- Kêfxweş, dilxweş – Serokê Amerîkayê. 8- Tesîr, guhertin. 9- Damar, kok – Li Nîgerîya çemek. 10- Kesên ji eşîra Barzan – Pronavê yekem. 11- Notayek (berepaş) – Cephe, hevkarî – Ego, egoîzm, xweperestî (berepaş). 12- Teqandin, peqandin – Erk û wacibên dînî /olî

## Xaçepirs



## Bersivên hejmara 71

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | m | a | r | m | a | s | î | | a | m | e | d |
| 2 | a | w | i | r | | r | | e | n | î | m | e |
| 3 | c | a | s | | r | i | t | k | a | p | | r |
| 4 | a | z | a | d | î | x | w | a | z | | a | m |
| 5 | r | | s | e | h | | e | w | | a | l | a |
| 6 | i | ç | | r | e | | e | r | z | a | n | |
| 7 | s | î | t | e | m | k | a | r | | a | s | |
| 8 | t | n | e | c | | r | a | | k | | t | a |
| 9 | a | k | r | e | y | î | | c | a | t | i | r |
| 10 | n | o | k | | o | s | ê | | b | e | n | d |

# Piştî Şakîra Kurd, Beyonce ya Kurdistanê



Mehlêt (20) keçeke Etyopî ye ku berî çend salan ji bo karkirinê hatiye Kudistanê. Niha navê wê bûye Meha û ew bi strangotina kurdî re mijûl e. Meha ji bo Rûdawê got: "Ji ber ez zimanê kurdî baş dizanim, min stranên kurdî guhdarî û ezber dikirin, herwiha min di ber xwe de digotin, heta carekê Deşnê Murad guhdariya dengê min kir û daxwaz ji min kir straneke bêjim." Meha niha bi navê 'Ji Etyopia bo Kurdistanê' klîpekê amade dike ku gotinên stranê bi herdu zimanan, kurdî û etyopî hatine nivîsandin û behsa çîroka hatina Meha bo Kurdistanê dike û gelek şirketên biyanî ji bo ku bibin sponsorê albûma wê peywendî bi wê kirine.

Mehlêt ji bajarê Addis Ababa ya paytextê Etyopia ye. Keça metika wê stranbêj e, ew ê piştî klîpa xwe serdana Etyopia bike û dîsa vegere Kurdistanê. Ajansa nûçeyan a Fransî AFP raporeke berfireh li ser derketina Meha weşand. Bi dilê wê ye ku navê wê bikin 'Beyonce ya Kurdistanê'.